# دیدارێ یار

# دیوانا

# شێخ شەمسەدینێ قوتبێ ئەخلاتی

# یێ بریفکانی

**١٥٨٨-١٦٧٤ز**

ژ کومکرن و دەستنڤیسا : شێخ مەمدوحێ بریفکانی دناڤبەرا
١٩٤٠-١٩٦٦ز

زاهد بریفکانی
بەرهەڤ و ئامادەکریە بو چاپێ

دەزگای چاپ و بڵاوکردنەوەی

زنجیرەی ڕۆشنبیری

*

**خاوەنی ئیمتیاز: شەوکەت شێخ یەزدین**

**سەرنووسەر: بەدران ئەحمەد حەبیب**

***

ناوونیشان:
دەزگای چاپ و بڵاوکردنەوەی ئاراس، گەڕەکی خانزاد، هەولێر
س. پ. ژمارە: ١
www.araspublisher.com

ناوی کتێب: دیوانا شێخ نورەدینێ بریفکانی
کۆکردنەوە و ئامادەکردنی: زاهد بریفکانی
بڵاوکراوەی ئاراس- ژمارە: ١٣١
بەرگ: شکار عەفان نەقشبەندی
خۆشنووسی بەرگ: مەحەمەد زادە
هەڵەگری: زاهد بریفکانی
سەرپەرشتیی چاپ: ئاوڕەحمان مەحمود
چاپی دووەم - چاپخانەی وەزارەتی پەروەردە، هەولێر- ٢٠٠٢
لە کتێبخانەی بەڕێوەبەرایەتیی گشتیی ڕۆشنبیری و هونەر لە هەولێر ژمارە (٣٠)ی ساڵی ٢٠٠٢ی دراوەتێ



شێخ شەمسەدینێ ئەخلاتی یێ بریفکانی د وێنەکێ ئاشوپی دا



## *Zahid Birîfkanî*

-Sal 1967 li bajêrê Dihûkê li Kurdistana Başûr hatiye ser dunyayê.
-Xwendina seretayî û navincî li bajêrê Dihûkê temam kirye.
-Li Zankoya Mûsilê di beşê kîmîyayê da xwendîye.

*Berhemên ku heta nuha dayîne çapê:*

-"Laleşîn", "Dîwana Şêx Memdû'hê Birîfkanî", beşa yekê, çapxana APEC, Stockholm / Swêd, 1997.
-"Dîdarê yar", "Dîwana Şêx Şemseddînê Qutbê Exlatî yê Birîfkanî", weşanên "Roja Nû", Stockholm / Swêd, 2001.
-"Zibanê kurdî", "Dîwana Şêx Nûreddînê Birîfkanî", weşanên "Roja Nû", Stockholm / Swêd, 2001.
-"Exlatî", "Dîwana Şêx Memdû'hê Birîfkanî, beşa duwê, weşanên "Roja Nû", Stockholm / Swed, 2001.
-"El-'heqîqe wel beyan fî tercûmet sadat Birîfkan". Nûser: Şêx Memdû'hê Birîfkanî" (sal 1961), Zahid Birîfkanî berhev û amadekirye.

**SPASÎ: Spas ji bo Roja Nû ku bi çapkirin û belavkirina berhemên edebiyata kurdî ya klasik û ya nû radibe, ji bo cara yekê ku çapa vî berhemî kirî û gihandîye destê xwendevan ez ji dil spasîyê dikim. Ev karê pê radibe cihê şanazîyê ye û xizmeta çanda me ya kurdî dike.**

# Dîdarê Yar

## Dîwana
## Şêx Şemseddînê Qutbê
## Exlatî yê Birîfkanî
**(997 - 1085 hicrî) (1588 - 1674 zayînî)**

Ji komkirin û destnivîsa
**Şêx Memdu'hê Birîfkanî**
di navbera 1940 - 1966 zayînî

**Zahid Şêx Memdu'hê Birîfkanî**
**berhev û amadekirye bo çapê**

Weşanên Roja Nû

**Weşanên Roja Nû: 53**

Adress Gustavslundsv. 168 A, 1 tr.
167 51 Bromma / Sweden

E-post: roja_nu@kurdistan.nu
Malper: www.kurdistan.nu

**Şêx Şemseddînê Qutbê Exlatî yê Birîfkanî**
**"Dîdarê Yar"**
**(ÇAPA YEKÊ)**

Berhev û amadekirin: **Zahid Birîfkanî.**

Wêneyê berg: Arif Sevinç



**ISBN: 91 762 056 x**

Stockholm 2001

# Naverok

# *Pêşgotin*

Piştî xebateka berdewam ji bo bidestêxistina berhemê zanayê ji Xwedê tirs **Şêx Şemseddînê Qu'tbê Exlatî yê Birîfkanî**, yê ku li navbera çerxê 15 û 16ê da jîyay, bi vê çendê gehîştime miraza xwe, da ku vê dîyarîyê pêşkêşî xwendevanên kurd bikem.

Hejî gotinê ye, ku ev dîwane hatîye nivêsîn bi destxetê Xwedêjêrazî bavê min - Şêx Memdu'hê Birîfkanî, yê ku xudan çendîn berheman bûye, ji wan dîwaneka helbestan ji du beşan pêk tê. Min li vê dawîyê piştî we'xerkirina wî bi 24 salan, çap kirîne. Şêx Memdu'hî bizava komkirin û nivêsîna vî berhemî ji sala 1940ê z. destpê kirîye û li sala 1966ê z. bi dawî kirîye. Wekû cenabê wî bi xwe dîyar kirî, û di pêşgotina vê dîwanê da, ya ku bi zimanê erebî nivêsî, weha gotîye:

-Eve komelek e ji helbestên qu'tbê zanayê cîhanê **Seyid Şêx Şemseddînê Qu'tbê Exlatî yê Birîfkanî** (Qeddese sîrrahu...).

Bi zimanê kurdî min li vêrê darêjtîye û kom kirîye, dibe ku hindike li himber dîwana wî ya mezin. Yê ku ji Exlatê barkirî, berew gundê Birîfkan çûyî li dûmahîya naverasta yekê, ji seda êkê, ji hizara duyê hicrî. Di sala 997ê h. hatîye ser dunyayê û di sala 1085ê h. li Birîfkan çûye ber dilovanî-

ya Xwedê û li wir hatîye veşartin, gorê wî yê pîroz nasyare, tête seredankirin, di mezargehê gundî da ye li hember darekê. Xwedê jê razî bit.

Gundê Birîfkan dikeve nav çîyayên navça Behdînan yên piştî ('Eyn Sifnê) Şêxan.

Dema mirov helbestên Xwedê jê razî Şêx Şemseddînê Exlatî bisengînît ji layê mukumîya hizr û bîra tête ber çav ku çend helbestvanekê rehwan û jîr bûye di vehînana karê xwe da, ji layê avakirina peyvan ku li ser be'hrên 'Erozî çûye û bi taybet be'hrên kamil di gel parêstina taybetmendîya helbesta klasîkîya kurdî. Û ji layê tex û çînên zimanî ve dewlemend e, ji 'ilmê felek û lahût û felsefeyeka berfireh tête ber çav û metirsîya Xwedayê Mezin û tinêbûna wî di helbestên Tesewifê da pir in. Ji layê xûşewîstîyê û evîndarîyê ve dastanên xurt û ramanên belav di 'işq û evînîyê da dîyar dibin, serbarî hestên netewayetî mîna zanayekê kurd rêvîngê evîna welatê xwe ye.

Ji bilî van helbestên Şêx Şemseddînê Exlatî yê Birîfkanî yên ku bi zimanê kurdî di nav vê dîwanê da me çap kirîn, ev beşek e ji dîwana wî ya mezin ya ku bi hemî pîtên Ebcedî pêk tê û her pîtek jî nêzîkî deh heta panzdeh helbestan e. Şêx Nûreddînê Birîfkanî ev ronkirine di destxetekê da nivêsîye, herweha şer'hek berfireh bi zimanê erebî li ser beşek ji van helbestan kirîye, me di dawîya vê dîwanê da çap kir.

Ji bilî vê hindê Şêx Şemseddînê Exlatî dîwaneka mezin ya helbestan bi zimanê 'erebî jî heye, herwiha gelek pirtûk û berhem nivêsîne, cihê daxê ye, ku gelek ji wana pîç û palaçe bûyîne û çi ji van berheman heta vê serdemê nehatine çapkirin.

Hejî gotinê ye, ku Xwedê jê razî Şêx Memdu'hê Birîfkanî helbestên bapîrê xwe Şêx Şemseddînê Exlatî li gor pîtên Ebcedî rêzkiribûn, me li hember wê destnivîsê bi kurdîya îro li ber nivêsîye. Di gel parêztina dengên kû di zimanê 'erebî da

bi kar anîn, me wek xwe hiştin. Ev berhemê hêja bi harîkarî û xebata çendîn mamostayên pispor di zimanên kurdî û farisî da hatîye lêkolînkirin, herwiha şirovekirina peyvên giran wek ferhengekê me jêra çêkirîye.

Ji bilî jînenîgara Şêx Şemseddînê Exlatî, ya ku piştî vê pêşgotinê dihêt, me hewl daye ku vê binemalê pitir binaskirin bideyîn, jîyannameya bapîrê şeşê yê Şêx Şemseddînê Exlatî, ew jî gorbehişt Şêx 'Huseynê Exlatî ye, (yê ku sal 1405ê z. li Misirê koç kirî) çap kirîye, ji bo dîyarkirina binerehên vê binemalê û girîngîya wê, da ku bibîte xizmetek ji bo dîroka çanda meya kurdî. Piştî ku helbestên Şêx Şemseddînê Exlatî bi dawî tên, me orîcînala vê destxetê ya ku Şêx Memdu'hî bi xwe nivêsî, bi her wî awayî dîsan di nav vê dîwanê da dubare çap kirîye û danaye ber çavên xwendevanên hêja û pişt ra şecereyên vê binemalê yên ku Şêx Memdu'hî berhev kiribûn ji bû parêstina binyata binemala Birîfkan. Hîvîdar im heta radeyekê şîya bim xizmetekê bigêhênime rewşenbîrîyê û çanda meya kurdî.

**Zahid Şêx Memdu'hê Birîfkanî**
**Kurdistan, 2000**

# Pêşgotina Şêx Memdû'hê Birîfkanî(*)

*(Bi zimanê 'erebî)*

## Bismîllah el-Re'hman el-Re'hîm

Hazîhî mecmû'e mîn kelam Qu'tb el-'arifîn el-seyid el-Şeyx Şemseddîn el-Qu'tb el-Exla'tî bîllû'xetî el-Kurdîye. 'Herrertû hûna ma î't'tele'itû 'eleyhî weîn kane qelîlen bîmucib dîwanîhî. El-lezî hacere mîn Exla't îla qeryet Birîfkan axir el-ni'sif el-ewwel mîn el-mae el-ûla mîn el-elf el-sanî lîlhîcre, ellezî kane wîladetûhû fî senet 997 lîlhîcre wel mutewaffî fî senet 1085 lîlhîcre bî Birîfkan wedûfîne bîha we qebrûhû me'irûf yûzar bîl meqbere 'înde şecere, (E'llahûmme ixfîr lehû welena).

Ena el-'heqîr el-feqîr xadim sucaddet el-muellif we mu'herrir hazîhî el-nusxe el-seyid Memdu'h îbin el-seyid Mu'hsin îbin el-seyid 'Ebdûlcebar îbin el-seyid 'Ebdûlqehar îbin el-seyid 'Ebdullah îbin el-seyid 'Ebdûlcebar îbin el-seyid Nûreddîn îbin el-seyid Ebû Bekir îbin el-seyid Zeynûl'abidîn îbin el-seyid

el-Şeyx Şemseddîn el-Qu'tb el-Xelawatî el-Birîfkanî el-Meşhûr bîced sadat Birîfkan cemî'en wellezî lehû dîwanûn 'ecîb bîllûxetîl Kurdîye welakîn lem yeqe'i fî yedîna 'xeyr cûzûi qelîl mînha, (re'zîye'llahû 'enhûm cemî'en), we înşae'llah sewfe nektûbûha 'heseb 'hurûf el hîcai fî hazel kîtab me'e baqî nesebîhî îla en yatte'sîle bîcedîhî el-'Huseyn şehîd Kerbelai (re'zîe'llahû 'enhû we'enhûm amîn).

'Herrertû haza el-dîwan fî senet 1940 îfrencî, wel Şeyx Şemseddîn el-Qu'tb el-Xelawatî el-Birîfkanî hûwe îbin el-seyid 'Ebdûlkerîm îbin el-seyid Mûsa îbin el-seyid Suleyman îbin el-seyid 'Ebdûl'xenî îbin el-seyid Îs'haq îbin el-seyid Babaman'sûr îbin el-seyid el-Şeyx 'Huseyn el-Exla'tî el-Meşhûr el-Mûteweffî bî-Misir senete 808 hicrî îbin el-seyid Ebûl'hesen 'Elî el-Xelewatî îbin el-seyid 'Hacî Nî'zameddîn îbin el-seyid E'hmed el-Exlatî îbin el-Şeyx Zeynûl'abidîn 'Elî el-Zûrdanî el-Muwa'hid el-Xorasanî el-seyid el-emîr el-Meşhûr bî ('Elî el-Hemedanî(**) ced sadat Exla't (qeddese sîrrahû el-'Ezîz).

*(*) Ev pêşgotina Şêx Memdû'hê Birîfkanî di orîjînala vê destxetê da bi zimanê 'erebî nivêsîye. Lewra me wek xwe hişt.*

*(**) Şêx Memdu'hê Birîfkanî di perawêzeka vê rûpelê da li jor navê ('Elî el-Hemedanî) nivîsîye ('Elî el-Zûrdanî) jî.*

# Pêşgotina Şêx Nûreddînê Birîfkanî

di navbera sal (1230 - 1238 hicrî) di destxeteke
da nivêsîye

**Bîsmîllah el-Re'hman el-Re'hîm**

E'elemû eyûhe el-ex el-'hemîn enne ceddîyel-rabi'i kane 'e'zîm el-keramat kesîr el-mucahedat lazim el-si'xûr welkuhûf mûdde medîde 'hetta 'sare 'xewse weqtîhî wellehû dîwanûn 'tewîl bîllîsan el-kurdî, weînî urîd en e'ze'e şeyien mîn dîwanîhî fî kîtabî haza lîya'ude 'eleyna bereketûhû feeqûlû muxemmîsen bîsmîllah el-Re'hman el-Re'hîm:

**E'llah çi fena bû li me her leyl û neharan**
**Mustesqîyê 'işqê te li ber roj û nizaran**
**Terkim dikirin cumleyê 'sa'hib dil û yaran**
**Evro weyim ez jêkve nenasim ker û baran**
**Ferqê nakirim ez nûnkê jêkve gul û xaran**(*)

E'elemû ennel ced el-Şeyx Şemdîn (**) (qeddese sîrrehû) kane hûwe el-ced el-rabi'i, feînnî weled el-seyid 'Ebdulcebbar wehwe weled el-Şeyx Nûreddîn we ebûhû el-seyid Ebû Bekir we ebûhû el seyid Zeynûl'abidîn we ebûhû el-Qu'tb el-Mezkûr (qeddese sîrrehû) welehû dîwanûn 'tewîl fî e'hwalîhî wefî bîdayatîhî îz hûwe qed lazeme el-Cîbal muddet sinîn kesîre weînnî qed reeytûhû mîraren kesîren we'eleyhî xele'i el-Qu'tbîye we erade en yûlbîsenî bîşer't en ûrafîqehû fîl'uzle felem ûrafîqhû weqed zekertû temam el-Rûiya we ma yete'elleq bîha fî kîtabî (**Îbraz deqaîq el-'Heqaîq**) welîebtedî'e fî enehû teqed'tabe fe înnehû mîn sûlalet el-'Huseyn el-Seb't (ra'zîye e'lahû 'enhû) welena ecdad meşhûrûn fî 'teraf el-Rom bîqa'sebet (**Xela't**) kekîtab weşteheret bî (**Exla't**) we e'ilemû enne el-ced el-mezkûr qed zekere mîn şe'te'hatîhî ma û'iya 'ulemai el-'e'sir fî teiwîlîha we ena eşre'hû leke be'i'zen mînha 'ela sebîl el-ixtî'sar def'en lîlîmlal welîenne kelam el-qewim kullehû yencer îleyhî felew îsterseltû lee'htacû îla fera'xîn temam me'e înî mûbtelî bîîrşad el-nas fî haza el-zemen el-muzmin ey qelîl el-îstî'idad wel 'eewan.

Feeqûlû enne el-şeyx el-qu'tb ceddîye el-şeyx Şemdîn qed-ellefe dîwanehû fî kullîn mîn 'hirûf el-hîcai 'ela wîfq el-dewawîn el-meşhûre fîltertîb welehû fî kullî be'hrîn mîn bî'har el-şî'ir ekser mîn 'eşaret el'xaz lakînnî îza şere'htû be'i'zen mîn

mu'xelefatîhî yetebeyyen lekel'hîml în kunte mîmmen lehû zewq fî kelam el-qewim bîen selekte fî el-'tarîq mûdde weîlla feqed la yezîdûke el-te'twîl fî el-şer'h îla el-melel.

**Ev pêşgotina Şêx Nûreddînê Birîfkanî ya ku bi zimanê erebî ye, li pêşîya şer'ha helbestên Şêx Şemseddînê Exlatî yê Birîfkanî nivêsîye. Me di dawîya vê dîwanê da çap kirîye.**

*(*) Berdewamîya vê pêncmalikîya Şêx Nûreddînê Birîfkanî li ser helbesta bapîrê xweyê çarê Şêx Şemseddînê Exlatî yê Birîfkanî l' dawîya helbestên Şêx Şemseddînî me bi giştîçap kirîye.*

*(**) El-Şeyx Şemdîn: mebesta wî Şêx Şemseddînê Exlatî yê Birîfkanî ye.*

# Binereha Şêx Şemseddînê Qu'tbê Exlatî yê Birîfkanî
## (1588 - 1674 zayînî)

Zanayê sofî yê bi nav û deng **Şêx Şemseddînê Qutbê Xelewatî yê Exlatî yê Birîfkanî** ew e, yê ku li sal 997ê hicrî-1588 zayînî li Exlatê hatîye ser dunyayê û li sal 1085ê hicrî-1674ê zayînî li Birîfkan kûç kirî. **Şêx Şemseddîn** kurê **'Ebdulkerîmê Exlatî,** kurê **Mûsayê Exlatî,** kurê **Silêmanê Exlatî,** kurê **'Ebdul'xenîyê Exlatî,** kurê **Îs'haqê Exlatî,** kurê **Baba-man'sûrê Exlatî,** kurê (Kemal el-Mûlle wel dîn) **Şêx 'Huseynê Exlatî** ye, yê ku sal 808ê hicrî (1405ê zayînî) li Misirê kûç kirî, yê ku navdar e di nav 'Ecem û 'Ereb û Kurdan da, di wê sala Têymûr Leng kûç kirî, ew çûye ber dilovanîya Xwedê. Kurê **Ebûl'hesen 'Elî yê Xelewatî yê Exlatî** ye**(1)**, yê ku li sal 781 hicrî kûç kirî, kurê **'Hacî Nîzameddînê Exlatî** kurê **E'hmedê Exlatî(2)**, kurê **Zeynûl'abidîn 'Elîyê Zûrdanî yê Muwa'hidê Xorasanî(3)** yê **Bozincî(4)** yan (Bozincirdî) yê Hemedanî ye, ku li sal 685ê hicrî kûç kirî, kurê **'Sali'hê Hemedanî,** kurê **Yûsifê Hemedanî,** kurê **Selîm** (Ebû Mûslim el-'Iraqî el-Hemedanî), kurê **Yûsifê Hemedanî** (Eba Ye'iqûb, yê ku sal 535h. kûç kirî)**(5)**, kurê **Eyûbî,** kurê **Mu'hemmed Yûsif** yê navdar bi ('**Sedreddîn**), kurê **Celaleddîn 'Huseyn,** kurê

**Zeynûl'abidîn** (Ebûl-Mueyyed 'Elî Şu'eyb), yê ku (Bi Zuhre yan Bohre) navdar e. Kurê **Ce'ifer** (Ebûl-'Heres), kurê **Mu'hemmed** (Ebû Ce'ifer el-Re'zewî), kurê **Me'hmûdî** (Ebû Mu'hemmed el-Re'zewî), kurê **E'hmedî** (el-Teqî el-Re'zewî), kurê **'Ebdûllayî** (el-Mûntexeb el-Re'zewî), kurê **'Elîyê** (el-Muntexeb el-Mûnteqî el-Mûxtar wel îmam el-neqîb bî Be'xdad), kurê **Îmam Ce'iferî** (el-Zekî el-Mû'seddeq, sal 272h. kûç kirî), kurê **îmam 'Elîyê Hadî** (el-'Eskerî, sal 254h. kûç kirî), kurê **îmam Mu'hemmed Cewadî** (sal 220h. kûç kirî), kurê **'Elîyê Riza** (sal 203h. kûç kirî), kurê **îmam Mûsa Binka'zim** (el-îmam Mûsa el-Ka'zim, sal 183h. kûç kirî), kurê **îmam Ce'iferî** (el-'Sadiq, sal 148h. kûç kirî), kurê **îmam Mu'hemmed Baqirî** (sal 114h. kûç kirî), kurê **îmam Zeynûl'abidîn 'Elîyê Sûccad** (el-Sûccad, sal 38h. ji dayîk bûye û sal 95h. kûç kirî), kurê **îmam 'Huseyn** (Ra'zîye'llahû 'enhû el-Şehîd, sal 61h. kûç kirî), kurê (**Fa'tîmet el-Zehrai el-Betûl,** sal 11h. kûç kirî), bîntî **Mu'hemmed** 'se'llû'llahû 'elleyhî wesellem, sal 10 hicrî çûye ber dilûvanîya Xwedê).

---

**Perawêz:**

(1). **Ebûl'hesen 'Elî:** li ser gotina seyda 'Ebdûlkerîmê Mûderris di pirtûka xweya bi navê ("Binemaley zanyaran", rûpela 432) navê Ebûl'hesenî bi vî awayî nivêsîye: Seyid û îmam û şêxê Mûrşid Şeyxûlîslam 'Elî, yê ku sala 915a hicrî kûç kirî, ev salmirina ku 'Ebdûlkerîmê Muderris nivêsî, şaş e û ya durust (Ebûl'hesen 'Elîyê Xelewatî ku rêça wî ya olî bû, yê Exlatî ye, sal 781 hicrî kûç kirî). Wek Şêx Memdu'hî

nivêsî û dibêje ew li serdema şahê Neqşebendanî jîyaye û ev şahe sal 719 hicrî ji dayîk bûye û sal 791 hicrî kûç kirîye). Û li cihek din seyda 'Ebdûlkerîmê Mûderris be'hsa secereya binemala Şêx Nûreddînê Birîfkanî weha gotîye. Ev şecere û neseb li ber pirtûka bi navê (**Îrşad el-Salikîn fî 'terîq el-'Arifîn**), ku yek ji bapîrên vê binemala Birîfkan, ew pirtûk nivêsîye û tê da navên endamên vê binemalê bi giştî be'hs li ser kirîye, herwiha Şêx Memdu'hê Birîfkanî ev şecera navborî di dawîya dîwana Şêx Nûreddînê Birîfkanî berhev kirîye û ev herdu dîwanên helbestan Şêx Memdu'hê Birîfkanî bi destxeta xwe di navbera sala 1940ê zayînî - 1966ê zayînî nivêsîye û li dawîya wan dîwana înformasyonên giring li ser vê binemalê ji dayîkbûn û koçkirina her endamekî ji vê binemalê li sala 1389 hicrî di meha Mû'herrem da nivêsîye.

(2) **Seyid E'hmedê Exlatî:** yê navdare bi (bapîr û mezinê seyidên Exlatê û Birîfkanî) û yekemîn kes bû ji bajarê Hemedanê barkirîye û hatîye Exlatê li ser gotina bavê xwe seyid Zeynûl'abidîn 'Elîyê Zurdanî yê Hemedanî yê Xorasanî sala 682ê hicrî bar kirîye Exlatê ji bo belavkirina rêça xwe ya olî ('terîqa Sehrwerdî). Ev barkirine di serdema sultan Tikûdar kurê Holakûxan kurê Tolxan kurê Çengîzxanî bû piştî nemana 'Ebbasîya ji Be'xdadê û herweha Eyûbîya.

(3) **Zeynûl'abidîn 'Elîyê Zûrdanî:** ewe yê ku bi navê (seyid û mîrê mezin Şêx Zeynûl'abidîn' Elîyê Zûrdanî yê Mûwe'hidê Hemedanî yê Xorasanî) navdar e û di serdema xwe da mîrekî mezin bûye. Sal 685 hicrî çûye ber dilovanîya Xwedê.

(4) **Bozincê**: gundeke ji gundên Hemedanê li Îranê û dibên (**Bozincirdî**).

(5) **Yûsifê Hemedanî (eba Ye'iqûb)**: yê navdar e bi babê Ye'iqûbî li sal (440 yan 441 hicrî) li Bozincê (fî rebî'i el-ewwel), li Bîyamîn ku dikeve di navbera (Herat û Ne'işûr), hatiye ser dunyayê û li sal (535 hicrî) piştî kû 95 salan jîyay, çûye ber dilovanîya Xwedê û li (Merv), kû bajêreke li Xorasanê, hatiye veşartin. Li ser gotina seyda Dr. 'Huseynê Xelîqî ji minra be'hs kir, ku gorê wî li Merv nasyare û bi xwe dîtye.

# Jîyannameya Şêx Şemseddînê (El-Qu'tb) yê Exlatî yê Birîfkanî

**(997 - 1085 hicrî) (1588 - 1674 zayînî)**

Şêx Şemseddînê Exlatî yê Birîfkanî di sala 997 hicrî - 1588 zayînî li bajêrê Exlat yê ser bi Bidlîsê li Kurdistana Bakûr ji binemalek rewşenbîr û navdar hatiye ser dunyayê, ew bi koka xwe digehe Şêx 'Huseynê Exlatî yê navdar. Xwendina xweya destpêk li dibistanên Exlatê xwendîye, pişt ra wekî hemî şagirtan li gelek ciha li ser destê çend mamostayên pispor li ser xwendina xwe berdewam bûye heta ku îcazên olî û zanistî wergirtî û bûye yek ji 'alimên serkêşêt zemanê xwe.

Seyid 'Ebdulkerîmê Exlatî di gel herdu kurên xwe (Şêx Şemseddînê Exlatî) û (Mu'hemmed Emîn) yê ku bi navê (Qu'tbeddîn) dihête nîyasîn, Exlat bi cih hiştin, berev eşîra Dûskî Jûrî li bakûrê Ûremarêve çûn û li wir cihwar bûn.

Ev mişextbûna wan ji ber wan şeran hat, yên ku di nêvbera herdu dewletên 'Sefewî û Osmanî domdarbûn, ku nêzîkî sed salan vekêşand û piranîya wan kinarên bakûrên be'hra Wanê û devera Exlatê kiribûn meydana şerên xwe. Êdî şêx li nêv eşîra Dûskî Jorîya cihwar bû, ya ku li jêr sêbera hakimê Hekarî (sultan 'Îmadeddînê Hekarî) yê ku 'hukmê wî heya sal 1049 hicrî - 1639 zayînî berdewam bû. Ew dever pir çiyayên mezin lê hene, ji ber hindê cihek asê bû, Şêx Ebdilkerîm li wir ma, heta ku koç kirî di gel kurê xwe yê bi nav Mehemmed Emîn, yê ku bi (Qu'tbeddîn) dihête nîyasîn û bav û kalê seyîdên Sen'anîyan e, pişt ra kurê seyid Ebdilkerîmî Şêx Şemseddînê Exlatî di gel birazayê xwe

Sen'an - kurê Mehemmed Emînî, di gel koçerbûneka eşîra Ertûşîya, (ev eşîre eşîreke koçer bû û carna koçerbûna wan li serdemê dewleta Osmanî digihêşte devera mizûrîyan li Başûrê Kurdistanê), êdî li sala 1030 hicrî, ku dike 1620 zayînî, Şêx Şemseddînê Exlatî û birazayê xwe di gel wan gihêştine Amêdîyê li devera Behdînan, ku dikefte ser rêya koçerbûna wan da. Eşîra Ertûşî li Amêdîyê rawesta ji bo silavkirinê li hakimê wê û him jî destûrxwestinê, ku mafê geryanê li devera li bin desthilata wî bide wan. Hingê hakimê Amêdîyê (**Sîdî xan**) bû. Dema Sîdî xanî Şêx Şemseddînî Exlatî dîtî û bi zanîn û oldarîya wî zanî, jê xwest ku li devera Behdînan bimîne û têda rêça xwe ya sofîtî belav bike. Sîdî xanî heft gund dîyarî Şêx Şemseddînê Exlatî kirin (**Birîfkan, Gelî Riman, Bazîdkê, Bêgeh, Rikava, Aluka û Tildêbê**). Şêx Şemseddînî daxaza hakimê Amêdîyê erê kir û li gundê Birîfkan tekîya xwe damezirand û dest bi belavkirina rêça xwe ya olî kir ya ku (Xelwatî - Sehrwerdî) bû û li wir berdewam bû li ser karê Êrşadê, heta ku çûye ber dilûvanîya Xwedê sal 1674 zayînî li gundê Birîfkan û gorê wî heta niha bûye mezargehê xelqê.

Şêx Şemseddînê Exlatî pênc kurên wî hebûn:

Yê yekê (**seyid Mûsa**) bû (1023 - 1111 hicrî) bû, ew jî babkalê seyidên gelê riman û Dergel û Bêskê û hin deverên dî ye. Şêx Şemseddînî karê rêvebirina mulkan û xizmeta mêhvanan û karûbarê navmalê dabûne desta.

Kurê duyê yê Şêx Şemseddînê Exlatî - (**seyid 'Ebdilre'hman**) bû (1025 - 1103 hicrî). Ew jî babkalê seyidên Etrûşê û Dêre û Navkurê û hin deverên dî ye. Şêx Şemseddînî karê Êrşad û we'izê dabû desta.

Kurê sîyê yê Şêx Şemseddînê Exlatî (**seyid 'Ebdul'xenî**) bû (1027 - 1121 hicrî) ew jî babkalê seyidên Beroşkê û beşek ji seyidên Nesre ye. Karê xwendin û fêrkirin û xwendkar û zanîn û rewşenbîrîyê birêve dibir.

Kurê çarê yê Şêx Şemseddînê Exlatî (**seyid Zeynûl'abiddîn**) bû (1035 - 1119 hicrî) ew jî babkalê binemala el-Nûrî û Şêstnavdîn û binemala 'Xezalî ye, di serdema xwe da qazî bû, karê pêywendî û berevanî pêkînan û çarekirina girift û xwîndarîyan bi rêve dibir.

Kurê pêncê yê Şêx Şemseddînê Exlatî (**seyid Mu'hyeddîn**) bû (1039 - 1120 hicrî) ew jî babkalê seyidên binemala mela û seyidên 'A'sî û beşek ji Nisirê û beşek ji seyidên Birîfkan û Sernê ye. Karê pêşnivêjîyê li mizgefta Birîfka dikir.

Şêx Şemseddînê Exlatî yê Birîfkanî yekem kes bû, ku tekîya Birîfka ava kirî û dest bi belavkirina rêça olî ya (Xelwetî) kirî, ev rewş nêzîkî 200 salan li serdemê zarok û nevîyên wî berdewam kir, heta ku Şêx Nûreddînê Birîfkanî dîyar û xuya bû, rêça Qadirî bi serva hate zêdekirin, êdî karê îrşadê bi dest xweva girt û bû serokê binemala Birîfkan û ji hevdemên xwe pêştir bû û bûye şêxekê mezin, hemû pişt bo wî vegeran û naznavê (El-Nûrî) bûye navê hemûyan ji vê binemalê û herwiha ev binemale bi 'terîqa Qadirî navdar bûye.

Şêx Şemseddînê Exlatî zanayek û sofîyekî navdar bû û helbestvanekê jêhatî bû, wî helbest bi her sê zimanan - zimanê zikmakî yê kurdî, 'erebî û farisî, bi zimanekê rehwan û xweş helbest vehandibûn û piranîya wan li ser sofîtîyê, nis'het û şîretvanîyê bûn, ji bilî vê hindê jî gelek ji berhem û pirtûkan nivêsîne digel dîwana helbestan bi zimanê 'erebî, kû dîwanek pir mezin e. Heya îro jî nehatîne çapkirin. Şêx Şemseddînê Exlatî yê Birîfkanî li her çar parçên Kurdistanê navdar bûye, di sala 1085 hicrî - 1674 zayînî li Birîfkan çûye ber dilovanîya Xwedê û gorê wî yê pîroz li nav mezargehê gundî da ye, li ber darekê û heya îro dihête seredankirin, Xwedê jê razî bit.

**Mella Me'hemmed Seyid Yasînê Birîfkanî**
***di pirtûka xwe ya bi navê (Fu'zelai Behdînan) jêgirtîyên Behdîna, ya ku li sala 1970 nivîsî û ji layê kurê wî ve seyda Mes'ûd Mu'hemmed Se'îd Yasînî ve hatîye çapkirin, weha li ser Şêx Şemseddînê Qu'tbê Birîfkanî dibêje:***

Seyid Şêx Şemseddînê Qu'tb ewe, yê ku di sala (1085 h. - 1674 z.) li gundê Birîfka çûye ber dilovanîya Xwedê û di mezargehê gundî da hatîye veşartin, ji Exlatê bar kirîye, ji bajarên rojhilat û demekê li gundê (Birîva) di navbera Gever û Colemêrgê da maye li serdema mîr 'Îmadeddînê Hekarî.

Piştra di gel hinek kurdên Ertûşî di sala (1030 h. - 1621 z.) li serdema Sîdî-Xanî ji mîrên Amêdîyê barkirîye û li gundê Birîfka û Gelîrimanê binecih bûye. Ji Şêx Şemseddînî û bermayê zuryeta vê binemalê digehne Ertûşîya û yên ku mayîn li Birîfka heta vê serdemê. Şêx Şemseddîn bapîrê seyidên Birîfka û Gelîrimanêye, herdu gundên nêzîk hev li devera Mizûrîyan.

Şêx Şemseddînî pênc kur hebûn:

Seyid Zeynel'abidîn û seyid Ebdil'xenî û seyid Mu'hyeddîn û seyid 'Ebdûlre'hman û seyid Mûsa û ew mezinê wane.

Kurê wî Zeynûl'abidîn, bapîrê binemala Birîfkan û binemala Nûrîye, û ji zuryeta wî Şêx Nûreddînê Birîfkanî ye, yê ku hatîye veşartin di nav mezarê gundê Birîfka da û heta niha ji xelkên deverê û yên biyanî dihête seredankirin. Û herwiha ji zuryeta seyid Zeynûl'abidînî, Şêx Nûrîyê Birîfkanî û birayên wî û nevî û kurên wan in, û Şêx Mu'hemmedê veşartî di mezarê ku dikeve ser rûbarê

Dihokê, û herwiha Şêx Nûr Mu'hemmedê mezin û zarokên wî.

Kurê duyê yê Şêx Şemseddînê Qu'tb seyid 'Ebdul'xenî bû. Karê mamostatîyê dikir, ji zuryeta wî: seyidên Beroşkê li nav devera Dûskîya û zarokên wan, ji wana Şêx 'Ubeydê mamostayê me'iheda îslamî li Dihokê û mirovên wî.

Kurê siyê yê Şêx Şemseddînê Qu'tbê Exlatî seyid Mu'hyeddîn bû. Li serdema babê xwe karê îmamtîyê li Birîfka dikir, ji zuryeta wî heya vê rojê:

Şêx Taha kurê Melek, kurê Me'hemmed Selîmî û Şêx Selîm û zarok û mirovên wî li gundê Nesra û niha li bajarê Mûsilê dimînin, û Şêx 'Elîyê el-Eshî û mirovên wî.

Kurê çarê yê Şêx Şemseddînê Qu'tbê Exlatî seyid 'Ebdûlre'hman bû. Ew bapîrê seyidên Etrûş û Rebetkêye, û belkî hemî devera Etrûşê jî. Ji zuryeta wî Şêx 'Ebdûl'hemîdxan, yê ku veşartîye di nav mezargehê li Etrûşê û Şêx 'Ebdul'hemîdê Etrûşî yê ku li serdema xwe qazîyê Be'xdayê bû, û herwiha ji zuryeta wî Şêx 'Ubeydu'llahê Etrûşî, yê ku niha li Mûsilê dimîne.

Yê dawî ji kurên Şêx Şemseddînê Qu'tbê Exlatî seyid Mûsa bû. Kurê wî yê mezine, li serdema bavê xwe serperiştîya karûbarên binemalê dikir, seyid Mûsa bapîrên seyidên Gelîrimanê ye û ew jî du beş in:

Mala Jorî û Mala Jêrî:

Hindî ku seyidên Dergelê yên ku li devera Dûskî, ew ji mala Jorîne, û seyidên Bêsikê û Zorava û Tilakir, yên ku li devera Dûskî, ji mala Jêrîn e.

Ev ronkirine bû, ya ku Şêx Memdu'hê Birîfkanî ji destxet û nivîsa Şêx Nûreddînê Birîfkanî ji bo min dîyar kirî, Xwedê jê razî bit (ji vê binemalê gelek rewşenbîr û edîb û jêhatî derkeftîne, me di pirtûka xwe ya bi navê ("Fu'zelai Behdînan") jêgirtîyên Behdîna bi giştî be'hsa her kesî kirîye.

# Seyda Enwer Maî

***di pirtûka xweya bi navê ("El-Ekrad fî Behdînan") "Kurd li Behdîna", ya ku di sala 1960ê zayînî li çapxana "El-Hî'san" li Mûsilê çap kirî, di rûpela 82ê da dema be'hsa Şêx Nûreddînê Birîfkanî dike, di perawêzekê da weha li ser Şêx Şemseddînê Exlatî nivêsîye:***

Zanayekê mezin, helbestvanekê rehwan, sofîyekê navdare. Di navbera naverasta sedsala yanzdê hicrî li gundê Gelîriman di nav eşîra mizûrîyan jîyaye, di rêça xwe ya olî (xelwetî) bû, helbestên wî, yên ku em li ser rawestîyan, bi zimanê 'erebî bûn, û beşek biçûk jî bi zimanê kurdî bûn, me dîtin bi ciwantirîn şêwe û bela'xe û em li ser çi berhemên wî yên dî rast pê nehatin, her çende ku wî gelek pirtûk jî nivêsîne. Herwiha me zanî ku wî dîwanek taybet bi zimanê kurdî heye û destxetek ji wê li cem nevîyê wî Şêx Memdu'hê Birîfkanî maye (yek ji rewşenbîrên zanayên vî demî). Şêx Şemseddînê Exlatî sal 997 hicrî hatîye ser dunyayê û sal 1085 hicrî çûye ber dilovanîya Xwedê û di mezargehê Birîfka da hatîye veşartin û gorê wî nasyare. Ji binemalek navdare, bi maqûlî û xudanbinyat di nav kurdan da, ew bi koka xwe digehe Şêxê Mezin - Şêx 'Huseynê Exlatî, yê navdar.

# Seyid Şêx 'Huseynê Exlatî(*)
## (808 hicrî - 1405 zayînî kûç kirî)

***Bapîrê şeşê yê Şêx Şemseddînê Exlatî yê Birîfkanî ye (Ji bo bêtir naskirina binyata binemala Birîfkanîyan, me pêwîstî dît ku vê danasînê ji bû xwendevanan dîyar bikin û çap bikin)***

**Şêx 'Huseynê Exlatî** kurê seyid **Ebûl'hesen 'Elî** kurê seyid **'Hac Nî'zameddîn** kurê seyid **E'hmed** kurê seyid **Zeynûl'abiddîn 'Elî yê Zurdanî yê Muwa'hidê Xorasanî ye.**

Mîr Şerefxanê Bidlîsî di pirtûka xweya "Şeref-nameyê" di beşa "Exlat" da dibêjît:

Gelek sazîyên xêrxwaz ji mizgeft û dibistan û qutabxane û dîwan û cih li Exlatê hene. Ew jî cihê ji dayîkbûna zana û maqûl û şêx û ewliyane.

Ji wana seyid 'Huseynê Exlatîye, yê şehreza di 'ilmên ('Zahir û Ba'tin) da, dipêşîya hemû zaneyên serdema xweda bû. Dîsan êkanê zemanê xwe bû di warê zanîna 'ilmê (El-Cefer), loma jî bi vê zanebûna xwe zanî ku leşkerê Cengîzxanî bi talanên mezin li Îranê û Turkistanê - Tûranê radibin û berî ku ew talan û fîtne bigehin devera Exlat, wî dunzdeh hi-

zar malbatên mirûv û dûst û mirîdên xwe di sala 790 hicrî ji Exlatê barkirin berev welatê Misirêve çûn û li wir man heya ku ew çûye ber dilovanîya Xwedê (sal 808 h. - 1405 z.) û gorê wîyê pîrûz liwire, û heta îro jî taxek li Misirê heye bi navê ”Taxê Exlatîya” li ser navê wane.

Seyid **Me'irûfê Exlatî** kurê seyid **E'hmed** di perawêza kû nivîsay li ser pirtûka bi navê (**Sîrr el-Esmai wel 'Hirûf**) ji danana Şêx **'Huseynê Exlatî** kurê seyid **Ebûl 'Hesen 'Elî** kurê **'Hac Nî'zameddîn** weha gotîye:

Seydayê min 'Huseynê Exlatî di pirtûka xweya ku bi navê (**Zexaîr el-Esma**) gotîye min (Cûbe) û îcaza giştî di hemû 'hizban û navan û pîtan ji bav û şêxê xwe seyid **'Elî yê Exlatî** wergirtîye. Wî jî îcaze ji bav û şêxê xwe **'Hac Nî'zameddînî** wergirtîye, wî jî îcaze ji bav û şêxê xwe seyid **E'hmedê Exlatî** kû ew mezin û bapîrê seyidên Exlatê û Birîfkanê ye, û yekemîn kes bû ji Hemedanê hatîye Exlatê di serdema sultan (**Tikûdar {E'hmed}** kurê **Hûlakû**) da, sal 682 hicrî wî jî îcaze ji bav û şêxê xwe - mîrê mezin **Şêx Zeynul'abiddîn 'Elî** yê **Zurdanî** yê **Muwa'hidê Xorasanî** wergirtîye. Senedeka din **Şêx 'Huseynê Exlatî** dibêjît min îcaze ji bav û seyidê xwe seyid (**Ebûl 'Hesen 'Elî** kurê **seyid Nî'zameddînî**) wergirtîye, wî jî îcaze ji şêx **Zeynûddîn yê Xanî** wergirtîye, wî jî ji şêxê mezin Welîyê kamil **Şêx Muhemmedê Çehl yê Tinanî yê Qerexilanî** (Qeddese 'ellahû sîrrehû) wergirtîye, wî jî ji şêx û seyid û mîrê mezin **Zeynûl'abiddîn 'Elî yê Muwe'hidê Xorasanî** yê navdar bi **Zûrdanî** wergirtîye, ku sal 685 hicrî li Bûzincê çûye ber dilûvanîya Xwedê. (Bozincê gundeke ji gundên Hemedanê û dibên Bozincirdê). Wî jî 'ilm û îcaza xwe ji şêxê xwe îmam **Nûreddîn 'Ebdûlre'hman Kesrevî yê Esferaînî** yê **Misrî** yê kû li sal 639 hicrî ji dayîk bûye û li 705 hicrî li Bexdadê kûç kirî wergirtîye, wî jî ji şêxê xwe îmam **Cemaleddîn E'hmed Cûzvanî** yê ku sal 669 hicrî wefat kirî, wî jî ji şêxê xwe îmam (**Re'zaddîn 'Elî yê Lalai),** yê ku li (3 meha

rebî'i el-Ewwel sal 642ê hicrî) kûç kirî. Wî jî ji şêxê xwe **îmam Necmeddîn Kubra** yê ku sal 618 hicrî çûye ber dilûvanîya Xwedê, îcaze wergirtîye, wî jî ji şêxê xwe **îmam Zûzûbahanê Biflî** yê **Misrî** yê ku li navarasta meha mu'herrem, sal 606 hicrî kûç kirî wergirtîye, wî jî ji şêxê xwe îmam **'Ebdûlqehar** (**yê Sehrewerd**), yê ku navdar e bi (**'Zîyaeddîn,** yê kû li sal 563 hicrî kûç kirî wergirtîye, wî jî ji şêxê xwe îmam **Qazî Wecîheddîn** yê navdar bi (**'Emmewîye**) wergirtîye, wî jî ji bav û şêxê xwe îmam **Mu'hemmedî** wergirtîye, wî jî ji şêxê xwe **E'hmed** kurê **Eswedê Deyneweri** wergirtîye, wî jî ji şêxê xwe îmam **Memşadê Deyneweri** wergirtîye, wî jî ji şêxê xwe **îmam Şêx Cuneydê Be'xdadî** wergirtîye, wî jî ji şêxê xwe (**'Zîyaeddîn Sirrî el-Seqi's**) Xwedê jê razî bît, wergirtîye, wî jî îcaze ji şêxê xwe **îmam Şêx Me'irûfê Kerxî** Xwedê jê razî wergirtîye, wî jî ji Şêxê xwe îmam **Dawûd el-'Taî,** Xwedê jê razî wergirtîye, wî jî ji şêxê xwe **'Hebîbê 'Ecemî** Xwedê jê razî, wergirtîye, wî jî ji îmamê mezin **Şêx 'Hesenê Be'srî** Xwedê jê razî, wergirtîye, wî jî ji (Emîr el-Muiminîn), mîrê musulmana **'Elî bin Ebî 'Talib** wergirtîye, wî jî ji (**seyid el-Murselîn Mu'hemmed el-Muxtar**) 'Se'llae'llahû 'Elayhî Wesellem ('Er'hîmna bîhîm ya Er'heme el-Ra'himîn).

Min ji bav-kalên xwe bihîst, ku bapîrê me yê mezin (seyid Kemal el-Mûlle Weldîn) seyid 'Huseynê Exlatî kurê seyid Ebûl 'Hesen 'Elî kurê 'Hac Nî'zameddînî, dema ku ji Exlata Romê berev welatê Misrêve çûyî, di sala 790ê hicrî gelek ji mirov û mirîd û dostên wî, ku nêzîkî deh hezar mala bûn, ji Exlat û dewr û berêwê digel çûn welatê Misrê û cihwar bûn û li wêderê tekîyayek bi navê Şêx 'Huseynê Exlatî, Xwedê jê razî bît, digel taxek bi navê Exlatîyan ava kirin.

Di gel wan mirûvên hîcret kirîn, pismamê min bû, **seyid Mecdî** kurê **seyid 'Ebdulkerîmî** kurê **seyid E'hmedî** kurê **seyid Zeynûl'abidîn 'Elî yê Zurdanî** kurê **seyid 'Sali'hê Hemedanî** kurê **seyid Yûsifê Hemedanî** kurê **seyid Selîm Ebû Mûs-**

**limê 'Îraqî yê Hemedanî** kurê **Yûsifê Hemedanî** (eba Ye'iqûb yê ku sal 535ê hicrî kûç kirî), kurê **seyid Eyûb** kurê **seyid 'Sedreddîn Mu'hemmed Yûsif** kurê **seyid Celaleddîn 'Huseyn** kurê **seyid Zeynûl'abiddîn** (Ebû el-Mûeyyed 'Elî Şu'eyb yê navdar bi Zuhre û dibên Bohre) kurê **seyid Ce'ifer (Ebûl-'Heres)** kurê seyid **Mu'hemmed Re'zewî** kurê **seyid Me'hmûd Re'zewî** kurê **seyid E'hmed Re'zewî** kurê **seyid 'Ebdûllayê Re'zewî** kurê **seyid 'Elîyê (el-Mûntexeb el-Muxtar Weneqîb Eşraf Be'xdad)** kurê **îmam Ce'iferî** kurê **îmam 'Elîyê Hadî** kurê **îmam Mu'hemmed el-Cewadî** kurê **îmam 'Elî yê Ri'za** kurê îmam **Mûsa el-Ka'zim** kurê **îmam Ce'ifer el-'Sadiq** kurê **îmam Mu'hemmed el-Baqir** kurê (**îmam Zeynûl'abiddîn 'Elî el-Sûccad**) kurê îmam '**Huseyn** kurê **'Elî bin Ebî 'Talib.** Xwedê ji wan razîbit.

Herwiha pismamekê minê din jî di gel Şêx 'Huseynê Exlatî, kû hîcret kirî, ew jî seyid Mûslim kurê Osman kurê seyid Mihemmedî kurê seyid 'Ebdûlre'hmanî kurê seyid 'Sali'hî kurê seyid Yûsifî kurê seyid Selîm (Ebû Mûslim) kurê seyid (Eba Ye'iqûb Yûsif) kurê Eyûbê Bozincî yê Hemedanî yê Xorasanî ye.

Dema ku seyid Huseynê Exlatî çûye ber dilûvanîya Xwedê sal 808ê hicrî, ku dike 1405 zayînî, li Misirê hat veşartin û gorekê dîyar û mezin li wir heye û dihête zîyaretkirin heta roja îrû.

Êdî bû karê îrşadê, Şêx Bedreddîn Mu'hemmed kurê Îsraîl kurê 'Ebdûl'ezîz kurê (el-Qa'zî Semawîye el-Rûmî) piştî we'xerkirina Şêx 'Huseynê Exlatî bi şeş meha cihê Şêx 'Huseynê Exlatî girt ji bû Îrşadê, lê paşan Şêx Bedreddînî Misir bi cih hişt û vegerîya welatê Romîya - Exlat. Seyid Baba-man'sûr kurê seyid 'Huseynê Exlatî yê Navhatî li cihê wî rûnişt ji bû karê îrşadkirinê.

Paşan sal 810 hicrî seyid Baba Men'sûr vegeriya Exlatê di gel mala xwe, ji bû karê îrşadê li wêderê jî û êdî ne vegera

Misrê ve.

Û hêşta gelek ji mirovên me li Misrêne, ku li wê derê di akincîne û niha piranîya me seyidên Exlatê li taxa (Dûrre) ku taxeke li Exlatê binecihin, ku ew cihê bav û bab-kalên meye. Xwedê ji wan hemûyan û ji me razî bît.

**Seyid Me'irûf** kurê **seyid E'hmedê Exlatî** (yê kû sal 935 hicrî kûç kirî) kurê **seyid Îbrahîm** (yê kû sal 900 hicrî kûç kirî) kurê **seyid 'Elî** (yê kû sal 870 hicrî kûç kirî) kurê **seyid Baba Meq'sûd** (yê kû sal 840 hicrî kûç kirî) kurê **seyid 'Huseynê Exlatî** Xwedê ji wan razî bit, li mizgefta (Elwadî) û bi rex gorê bapîrê me yê mezin seyid '**Hac Nî'zameddîn** kurê (seyid Lûrbaba **seyid E'hmedê Exlatî** yê **Hemedanî yê Bozincî yê Xorasanî**). Seyid Me'irûfî weha nivîsîye: "Li roja duşembî 25ê meha receb sal 961 hicrî di wê sala kû şah ('**Tihmasib**) hatîye ser welatê Kurdistanê û Azirbaycanê û piştî vegera me ji hîcretê bi pênc salan".

Seyid (E'hmedê Exaltî kurê Zeynûl'abiddîn 'Elîyê Zûrdanî yê Mûwe'hidê Xorasanî yê Bûzincî) ew e, yê ku ji Hemedanê çûye bajêrê Exlat li serdema sultan (Tikûdar {E'hmed}) kurê Holakûxan kurê Tûlxan kurê Cengîzxanî an ku sal 682 hicrî piştî ku babê wî seyid Zeynûl'abidîn kurê 'Elîyê navdar bi (Mûwe'hidê Xorasanî yê navdar bi Zûrdanî) danaye ser xîlafeta terîqa Sehrwerdî. (E'llahumme Îr'hemna westûrna we'hfe'zna bîlû'tfîke wekeremîke mîn fîtnet el-zeman, amîn ya seyidel mûrselîn).

**Şêx Memdû'hê Birîfkanî**
**1940 - 1966ê zayînî nivêsîye.**
***(Şêx Memdû'hê Birîfkanî li ciheke gotîye ev nivîsîne di meha mu'herrem sal 1389 hicrî min nivêsîye).***

Li ser gotina Şêx Memdû'hê Birîfkanî kû bavê "Şêx 'Huseynê Exlatî" (kû navê wî Ebû el-'Hesen 'Elî el-Xelawetî ye),

vî Ebû el-'Hesen 'Elî du kur hebûn. Yê yekê Şêx 'Huseynê Exlatî yê nav hatî, sal 808 hicrî - 1405 zayînî kûç kirîye. Navê kurê Ebû el-'Hesen 'Elî yê din (Yûsif) bû. Yûsifî kurek hebû bi navê 'Huseyn (*Yûsifî ev nave li ser navê birayê xwe lê kiribû)* û ev 'Huseynê kurê Yûsifî, kurê Ebû el-'Hesen 'Elî di sala 795ê hicrî hatîye ser dunyayê, dike 1394ê zayînî. Zanayekê mezin bû di zanist û hunerê da, li Bidlîsê maye, piştra çûye gelek cihên din, ji wan ciha Cizîrê bû û piştra çûye (El Na'sîre), piştra çûye Şamê û dawî çûye (Mekke) û li wir maye 'heya çûye ber dilûvanîya Xwedê di sala 858ê hicrî, kû dike 1454ê zayînî. Xwedê jê razî bît.

Û ev ('Huseynê kurê Yûsifî kurê Ebû el-'Hesen 'Elî yê Xelewatî) ew e, yê kû *Mam Hejarî di "Şerefxana Bidlîsî" da ya kû vegerandîye zarava soranî, be'hsa vî 'Huseynî kirîye, lê Mam Hejarî gotîye belkî (Şêx 'Huseynê Exlatî kurê Ebû el-'Hesen 'Elî) ew Şêx 'Huseyn e, yê kû di rewşenbîrîyê û zanistê da gelek navdar bûye, lê li (Mekke) kûç kirîye, lê belê navê babê wî Yûsif kurê Ebû el-'Hesen 'Elî bûye.*

Ew 'Huseynê kurê Yûsifî kurê Ebû el-'Hesen 'Elî, yê kû Mam Hejarî be'hs kirî, **kurê birayê Şêx 'Huseynê Exlatî ye.**

(•) Şêx Memdû'hê Birîfkanî ev nivîsîna li ser Şêx 'Huseynê Exlatî û bav-kalên wî bi zimanê 'erebî li dawîya dîwana Şêx Şemseddînê Qu'tbê Exlatî yê Birîfkanî nivîsandibû, me vegerand ser zimanê kurdî û ev renca Şêx Memdû'h pê rabûyî ji bû ronkirin û parêstina binyata vê binemalê, herwiha ji bû parêstina dîroka kurdan.

**Zahid Birîfkanî**

*’Herf el-Elîf (pîta A)*

**Mest û xerabim**

Mest û xerabim ji meyê, ten telelat lala
Dibêjim ez ya lebeyê, ten telelat lala

Xardimeve şerbeta ’saf, bûyîm bi rengê kûhê Qaf (**1**)
Nabêjim ez evê gezaf, ten telelat lala

’Aşiq û dêwaneyim ez, mûqîmê meyxaneim ez
Soht wekû perwaneyim ez, ten telelat lala

’Aşiqê rûyê dilberim, mestê xerabê bavzerim (**2**)
Sotîyê biryan cegerim, ten telelat lala

Çûye ji min ’sebir û qerar, tigrîm bi firyad û hewar
Nevêt emin ’xeyrî dîdar, ten telelat lala

Çib’kim dîsa kiwîve b’revim, sohtim ji ser ’heta qedem(**3**)
Wi’llah ke ez (min) aşiqî tûm, ten telelat lala

Îname nav ’ehd û wefa, ’xeyrî te me havêt qefa (**4**)
Kokeyê min (kûkhimin) zewq û ’sefa, ten telelat lala

Zewq û ’sefa û wecdê ’hal, cumle li min bûn be celal (**5**)

Eymenim ez ji qal û ’hal, ten telelat lala (**6**)

Eymenim ez ji qal û qîl, li vê rê ’işqe delîl
Xoşe ke hestin ev sebîl, ten telelat lala

Mûba’h bûyî li min şerab, ava bûyî dilmê (dilê) xerab(**7**)
’Işqê te kirdim ez kebab, ten telelat lala (**8**)

Waleh û dîn (faş) û mestim ez, mestê meyê elestim ez (**9**)
Rind (zêde) qede’h tidestim ez, ten telelat lala (**10**)

Sata ke dafime qede’h, gût emin feqed efle’h (**11**)
Etayîm û mest û fere’h, ten telelat lala

Ten telela dibêm hûnûn, waleh û mestim û cinûn
’Aşiqim ez l’yekî bêçûn, ten telelat lala

Tenim tinê weten tenê, ’işqa te ez kerdem ’xenê (**12**)
Ji navê em cûstî menê, ten telelat lala (**13**)

Li ’aşiqê te sub’hetî, ku bîxûd bûye şerbetî (**14**)
Dîsan bi xû çû xelwetî (**15**), ten telelat lala (**16**)

---

***Mest: serxweş.***
***Xerab: bê ’hal û xerab, rûxaw.***
***Lebeyê: (leb: lêv, lêw), bi dev gotinê.***
***Kûhê qaf: Çiyayê Qaf.***
***Gezav: gotinên ne di cihê xwe da, qisey bê cê, gotinên bê sûd.***
***Dêwane: dîn, şêt, mecnûn.***
***Perwane: pelatînk.***
***Biryan: sûhtî û şewitî, sûtaw.***

*Firyad: hewar û gazî.*
*Dîdar: dîtin, çawpêkewtin.*
*Qefa: ser, hûş, mêşk.*
*Kûkeê min: hewêrdey min.*
*Wecdê'hal: kêyfxûşî li 'hal, ewperî xûşî li 'hal, (te'xmûrûhû el neşwe).*
*Celal: berzî û gewreyî, sîfatên Xwedê, (te'xmûrûhû el neşwe el Îlahîye).*
*Eymen: parêstî, (eymenim: parêstîme, parêzrawim).*
*Mûba'h: fireye, zûre, (mesmû'h).*
*Waleh: gêj, serxûşê 'işqê.*
*Elestim: (Elestû bîrebbîkûm) îşarete bû ayeteka Quranê (sûret el E'iraf, jimara ayetê 172).*
*Sata: gava, katî, se'eta, dema, çaxa.*
*Feqed efle'h: (Qed efle'he men zekaha) îşarete bû ayeteka Quranê.*
*Etayîm: serxûşim û şadim.*
*Bêçûn: bê nimûne (ewey ke nimûney wekû xûy nîye, kes wek wî tune, bê hawta, (bîla ne'zîr).*
*'Xenê: 'xenî, zengîn, dewlemend.*
*Em cûstî menî: (cûsten: bi dû tiştekî gera, be diway şitêka gera), ('teleb, fetteşe 'en).*
*Sub'het: yekemîn vexwerina meyê di serê sibê da.*
*Şerbet: mey, şerab.*
*Bîxûd: bê me'ina, bê qîmet.*

Ev rêzên helbestê di nav destxeta Mu'hemmed 'Tahirê Birîfkî da, bi vî awayî bûn:

(1) **Xwerdive ji şerbeta 'saf, bûyme wekî ke kûhê qaf.**
(2) **Aşiqê rûyê dilberim, mest û xerab û bavzerim.**
(3) **Çibkem dîsa kûve birevim, sotim zi ser 'heta qedem.**
(4) **Înam venav 'ehid û wefa, 'xeyrî te me havêt qefa.**
(5), (6) Ev herdu rêzên helbestê di nav destxeta Şêx

Memdû'hê Birîfkanî da tunebûn, me di destxeta Şêx Mu'hemmed 'Tahirê Birîfkî da dîtîye, û li vir zêde kirîye.

(7) **Mûba'h bost li min şerab, ava bûyî dilmê xerab**

(8) **'Işqê tû rast nûqil û kitab, ten telelat lala.** Herwiha di destxeta Şêx Memdû'hî da bi du awayan bû, awayê din eva bû: (**'Işqê tirast noqil kebab, ten telelat lala**).

(9) **Waleh û faş mestim ez, mestê meyê elestim ez.**

(10) **Zêde qede'h te destim ez, ten telelat lala.**

(11) **Sata ke daveme qede'h, gûte emin feqed efle'h.**

(12) **Tenim tinê û ten tenê, 'işqê te ez kerdem 'xenê.**

(13) **Ji nav eme cûstê menê, ten telelat lala.**

(14) **Xelwetî:** naznavê şi'êrî yê Şêx Şemseddînê Exlatî yê Birîfkanî ye, herwiha di hinek helbestan da naznavê xwe bi (Şemdîn) jî nav kirîye, û herwekû me di jîyannameya Şêx Şemseddînê Exlatî da dîyar kirî, ku (Xelwetî) rêça olî ya Şêx Şemseddînê Exlatî bû, di wê serdema ku li Exlatê û piştra li Birîfkan, ev rêçe belav kirîye.

*Şêx Memdu'hê Birîfkanî li alîyekê destxeta xwe hine peyv bi awayekê din jî nivêsîye, û li hember wan peyvên cawaz danaye (nusxe), me ew peyv di nav rêzên helbestê da xistine nav du kivanan da.*

***Şêx Nûreddînê Birîfkanî şer'ha vê helbestê di navbera sal 1230-1238 h. di nav destxeteka xwe da bi zimanê 'erebî bi giştî kirîye. Ji bo parêstina wê şirovekirina ku Şêx Nûreddînî kirî û destkarî lê nehête kirin, me pêwîstî dît ku wê şer'hê wek orîjînalê em di vê dîwanê da çap bikin û deynîn ber çavê xwendevanên hêja. Ev şer'h di beşa 'erebî da ye.***

*’Herf el-Tai (pîta T)*

***Dîdarê yar***

Derdê ’işqê weh li min, rûjî ezel kir ser nivişt
Her ji hingê dilê kul bûye, çu biryanê birişt

Ev dilê kul sûz û derdî, ji te besin ta ebed
Nemit’vê (**1**), ’hûr û qi’sûr û cumle lezzatê behişt

Hûn mebên kev (**2**) derde evrû, raste dilmê kul xelat
Evhe mîras hate bal’min, qern be qern û pişt be pişt

Derd û ’işq herdu cemabûn, hat’ne ser dilmê xerab
Lew perat ev dil ke hingaft, hem bi şîr û hem bi xişt

’Talibê dîdarê yarim, costû cû daim tikim
Ger xerabatest û mescid, wer çi ke’ibest û kenîşt

Her ji hingê wer ku bûyîm, aşnayê derdê dost
Terkîyan xûm kirdî her kez, lê nevêtim mal û çişt

Leşkerê ’işqê ’elem îna veşehristanê dil
’Xaret kir ehlê şehir, çendkêk dibûn hûr û dirişt

Çindikê (3), ez b’girîm ji sûz û derdê hîcranê ’hebîb
Her ke pêjabû l’gîyanim, êstiranim cumle şişt

Gotim ey dil qet nebî, carek ji wê ’xafil bibî
Nûke bêşik hest ’xeflet, lal di destê fi’ilê zişt

Me’hwî nabîtin li ber, dilmê xerabim neqşî yar
Takê mesken qebir û balînim bibîtin berdê hişt

Tav’kengî (4) mûnte’zir bim, ’sebir û ’taqet min neman
Ey ’hebîba way li min, ke’v xelwetît yêkcarî kûşt.

---

*Rûjî ezel: destpêka xûlqîyet, seretay bûn, (bîdayet el wicûd).*

*Ser nivişt: qeder, çarenûs.*

*Biryan û birişt: sûhtî û şewitî, sûtaw û birajtî, bijartî, bijraw.*

*Nemit’vê: min nevê, namewê.*

*Dilmê: dilê min, dilim ke.... .*

*Mîras: mîrat, bûmawe.*

*Qern be qern: sedsal dûway sedsal, sedsal li dû sedsal.*

*Pişt be pişt: newe diway newe. (cîlen be’ide cîl).*

*Perat: peritî.*

*Hingaft: lêdana tîr û gullê, (ew şîr û rim rasterast bi dilê min ket û peritand û parçe-parçe kir), (î’sabet el hedef).*

*Xişt: Cûrêkî çek e wekû xencer.*

*Cûstû cû: Bi diway şitêk geram (lêre ebête! be diway yar degerêm).*

*Xerabatest: (xerabat est: meyxane).*

*Kenîşt: dêr, kenîse.*
*Aşna: şaraza, nas.*
*Terkîyan: (min terka hemî dûst û birader û malê dinyayê kir).*
*Çişt: tişt.*
*'Xaret kir: talan kir, şeland.*
*Çendkêk: çend kes.*
*Hûr û dirişt: hûr û gir, wird û dirişt.*
*Sûz û derd: da'x û derd, kûl û derd.*
*Êstiran: hêsir (êstiranim: hêstirên min, hêsirên min).*
*Fi'ilê zişt: karê kirêt, îşî naşirîn.*
*Me'hwî: neman, nehiştin.*
*Neqiş: wêne, şikil (neqşîyar: şiklê yar).*
*Balîn: serîn, balîf, balîfk, balgî.*

(1) Nemit'vê: li gor detsxeta Şêx Memdu'hê Birîfkanî bi vî awayî hatîye nivîsîn (Nimtivê), ku dibe (Ne min divê).
(2) Kev: mebest ji vê gotinê ”ke ev” e.
(3) Çindikê: mebest ji vê gotinê ”çendekî” ye.
(4) Tav'kengî: mebest ji vê gotinê ”heta kengî” ye.

*Herf el-Rai (pîta "R")*

***Rimûzê Cawîdanî***

Şukrê 'heq daim tikim ez, kû kerê min par mir
Sûcdeyê şukrê tibim ez, kû kerê min par mir (**1**)

Ew kerê rehwar û vervî, bi'tir û cih dest û kûvî (**2**)
Jêm nema yêkcar hîvî, kû kerê min par mir

Ew kerê vervî û rehwar, bê 'sim û bê nal û bizmar (**3**)
Jê vesam evsalî yêkcar, ku kerê min par mir (**4**)

Ker mir û kevin bûye palan, bar yêkcar bir bi talan
Ez xweşim ev car (ev sal) li 'halan, ku kerê min par mir

Ez xweşim ev car, ku ker mir 'xaîbest û nîye 'ha'zir (**5**)
Sirrê 'xeyb lêm bûye 'zahir, ku kerê min par mir (**6**)

Ker mir û ez jê hesaim, remzê 'xeyb mekşûfe daim
Xûşdilû pir 'hal û şaim, ku kerê min par mir

Kes nizanî kev çi 'hale, ev çi me'ina ev çi qale
Ez bibêm biz'banê lale, ku kerê min par mir (7)

Ew kerê kez lê siwar bûm, ez ji dest efkar zar bûm (**8**)
Ew mir û ez lew dîyar bûm, ku kerê min par mir

Geh li ser min ew tibû bar, geh tibûm ez liwî siwar
Her libû tekrîmê car car, ku kerê min par mir (**9**)

Geh li min 'xaîb tibû ew, geh li balim bû, bû yek cew
Nû hesaim xûş tikim xew, ku kerê min par mir (**10**)

Ev çi remz û ev çi ker bû, ev çi 'hal ev çi ne'zer bû
Min li xû evrû çêtir bû, ku kerê min par mir

Ker mir û ez bûm bi tazî, nûke dil 'xemgîn tixazî
Ta nekim ez lehû û bazî, ku kerê min par mir

Wey kerê min mir ji birsê, wexte lê pinkêvim 'ersê (**11**)
Bûme eymen ez ji tirsê, ku kerê min par mir

Wey kerê min wey kerê min, vervî û hem la'xerê min(**12**)
Xûş vebûn derdê serê min, ku kerê min par mir

Wey mixabin derdrêjim, kes nizanî kez çi bêjim
Histiran ez lew tirêjim, ku kerê min par mir

Nakim ez lavê bi de'iwa, mûnkîrest nadan û e'ima
Xûş tizanin ehlê me'ina, ku kerê min par mir(**13**)

Ev rimûzê cawidanî ehlê me'ina vê tizanî
Her dibêjim zahidanî, ku kerê min par mir(**14**).

---

***Rehwar û vervî: rêgebir, tîjro, tûjro, tûjrê, xûşbez.***
***Kûvî: kêvî, kîvî, kêwî.***
***Jê vesam: jê veqetam, min lê dabiram.***
***Palan: kurtan.***
***'Xaîbest: ('xaîb: bizir, ne hazir, windabû).***

*Hesaim: (hesai: hêsa, re'het), jê hêsabûm, le destî re'hetbûm.*
*Remzê 'xeyb: qisey newtraw, gotinê 'xeyb.*
*Şaim: (şai: şad, xweş'hal), şadim, keyfxweşim.*
*Kez lê: ke ez lê.*
*Tekrîmê: (tekrîm: kerem, qedirgirtin) xatir girtinê.*
*Cew: ceh, (şe'îr).*
*Lehû û bazî: galte û gep, mijîlbûn û yarî.*
*Binkêvim 'erzê: bimirim.*
*Eymen: dilnîya, necat, xelasbûn, necatbûn.*
*La'xer: ze'îf, lawaz, jar.*
*Laf: direw, dirû û delese.*
*Mûnkîrest: yên kû înkarê dikin.*
*Nadan û e'ima: nezan û kûr.*
*Rimûzê cawîdanî: qisey nemir, axiftinên dimînin heta hetayê.*
*Zahidanî: (zahid: ji dunya veqet, bi axiretê ve mijûl).*

Di destxeta Şêx Mehemmed Tahirê Birîfkî da, ev rêzên helbestê bi vî awayî bûn:

**(1) Sûcdeya şukrê tibim ez, ku kerê min par mir.**
**(2) Ew kerê dişwar û fervî bi'tirû bê dest û kûvî.**

*Herweha Şêx Memdu'hê Birîfkanî jî di destxeta xwe da ev rêza jimara 2 li ser peyva "rehwar" nîşanek danaye û li perawêza rûpelê wî jî nivêsîye "dişwar" û li hember nivêsîye "nusxe", ku mebesta wî di destxetek din jî da ya bi vî awayî ev peyv hatîye nivîsandin. Herweha li jor peyva "cih" di nav vê rêza jimara dudu nivêsîye "bê", wekû destxeta Şêx Mehemmed Tahirê Birîfkî.*

**(3) Ew kerê fervî û dişwar, bê cew û bê nal û bizmar.**

*Şêx Memdu'hê Birîfkanî li jûr peyva "sim" wî jî nivêsîye "cew".*

**(4) Jê hesam ev salî yêkcar, ku kerê min par mir.**

(5) **Ez xweşim ev sal, ku ker mir, ’xaîbest û nîye ’ha’zir.**
(6) **Sîrr û ’xeyb lêm bûye ’zahir, ku kerê min par mir.**
(7) **Ez tibêm be z’manê lale, ku kerê min par mir.**
(8) **Ew kerê kez lê siwar bim, ez di dest evkar zar bûm.**
(9) **Hem libû tekrîmê car car, ku kerê min par mir.**
(10) **Nûke hisyam xûş dikim xew, ku kerê min par mir.**
(11) **Wey kerê min mir ji birsê, wexte lê bikev’me ’irsê.**
(12) **Wey kerê min, wey kerê min fervî û wey la’xerê min.**

*Herwiha Şêx Memdu’hê Birîfkanî jî di destxeta xwe da ev rêza jimara 12a li jûr peyva ”hem” nivêsîye ”wey”, wekû destxeta Şêx Mehemmed ’Tahirê Birîfkî.*

(13) **Xûş tizanî ehlê me’ina, ku kerê min par mir.**
(14) **Her tibêjî zahidanî, ku kerê min par mir.**

*Şêx Mehemmed ’Tahirê Birîfkî di hemî helbestê da li ser pîta (m) di nav peyva (par mir), (û) danaye, wê demê ev peyv*

*bi vî awayî tê xwendin: (par mur), yan (parmur).*

**Manendê şêr**

Kûje û rûvî bi lafê, key tibin manendê şêr
Rextê mêran ger bipûşît, pîrejin nabîte mêr

Me'ina mêran tişî 'sûretê nedîrî î'itîbar
Lalî 'serrafî yeqîn, qelbê de'xel nayên bi kêr

Kûk li de'iwê kez şahê weqtem, eblehest
Qet bi lafê şex'sê birsî, bêguman nabîte têr

Hiştîme takû ke hestin, me'irîfet nayê ji te
Lafê însanî meke, 'heywan asa, her biçêr

Xelwetî îrşadê pîrê xû bigir mû'hkem bi dest
Guh li xelqî qet medêr, madam ku baqî bîte lêr.

---

***Kûje:** delek, kûjik, ('heywanek wekî rûvîye, pîstê wî bi qîmete).*
***Laf:** dirû û delese, direw û gotinên bêsûd, gotinên bêfayde.*
***Manend:** wekû, wek, mîna.*
***Nedîrî î'itîbar:** î'itîbarî nîye, nirxî nîye, bihayî nîye, bihayê wê tuneye.*
***'Serrafî yeqîn:** mirûvî pak û xwenas, bawerdar, xwedêniyas û têgiheştî.*
***Qelbê de'xel:** dilê nepakij, dilî nepak.*
***Eblehest:** (ebleh: nezan), (est: heye), nezane.*
***Lafê însanî meke:** nebê ke ez însanim, bangaşe meke.*

***'Heywan asa: wekû 'heywan.***
***Biçêr: bilewerê, çêrandin.***

*'Herf el-Qaf (pîta "Q")*

**Derdê 'işq**

'Alem eger çî qal tikin, ezê bêjim ji derdê 'işq
Qetlim eger 'helal tikin, ez tibêjim ji derdê 'işq

Mûnkirî vê ji mêjin ew, ji dîrîyê dibêjin ew
Xûnim eger tirêjin ew, ez tibêjim ji derdê 'işq

Ji derdê 'işq evan tibêm, 'zahire hem 'eyan tibêm
Sirrê xefî beyan tibêm, ez tibêjim ji derdê 'işq

Hizar eger înkar tikin, men'ê minê 'xemxwar tikin
Er wekû min bîdar tikin, ez tibêjim ji derdê 'işq

Me bi xom vekû kû tû b'kim, bi no'tqê 'işqê deynekim
Wi'llah neşêm kû ez wekim, ez tibêjim ji derdê 'işq

'Işqê mecazî nîye ev, bê be'seran nedîye ev
Dîsa li min vejîye ev, ez tibêjim ji derdê 'işq

'Işqê 'hebîbê me'inewî, min tike dîse mûnzewî
Zûr kû tikit li min qewî, ez tibêjim ji derdê 'işq

'Işqê li min kû cûr tike, dêwê recîmî kûr tike

Dîsa li min kû zor tike, ez tibêjim ji derdê ’işq

Ji derdê ’işq tinalim ez, mestê ti wecd û ’halim ez
Bayê bero wî’salim ez, ez tibêjim ji derdê ’işq

Şicûşim ez ji mu’hbetê, her vedixum ji şerbetê
Dîsa ji nû ku derdvetê, ez tibêjim ji derdê ’işq

Heta kû maye nîv remeq, dersê ’xemê û meh sebeq
Çû ş’kûvetê li balê ’heq, ez tibêjim ji derdê ’işq

Ew kewa min tikû pigav, zert tibû rengim û bav
Dîse kû soht cerg û hinav, ez tibêjim ji derdê ’işq

Heta ku Xelwetî heye, ’aşiqê bê gavê teye
Her te’zmîmî ku lome ye, ez tibêjim ji derdê ’işq.

---

*Mûnkirî: înkarkirin, yên kû înkarê dikin.*
*’Eyan: aşkera, aşkira.*
*Xefî: nihênî, şarawe, veşartî.*
*Bîdar: hişyar, ayax.*
*’Işqê mecazî: evînîyek bû rabiwardin, ’işqî dirû, ’işqî serzewî û dinyayî.*
*Bê be’seran: (bê be’ser: bê çav), nezanan.*
*Li min vejîye: jîyanewe, jinûve jîyan, serhildanewe.*
*Me’inewî: xûşewîsta bi me’ina û rastî û durist, ’heqîqî, (’işqî ’heqîqî û rasteqîne).*
*Mûnzewî: gûşegîr, mirûvê ji xelqî dûr ketî mijûlî ’îbadet û ’iîrfanê.*
*Cûr: cê be cêkirin.*
*Dêwê recîm: şêytanê dêw, şêytanê we’hş.*
*Ti wecd û ’hal: kêyfxûşî, ew perî xûşî, (te’xmûrûhû el-*

*neşwe).*

*Bayê berû: bayê bi rûyê însana dikeve, (qîble), rûgeh.*

*Şicûşim: (cûşîden: kelandin), lecûşim bexrûşim.*

*Derd vetê: kûl û êş bi alîyê min vetê.*

*Nîv remeq: nîwe giyan, nîwe nefes, bêtiwana, nîv rû'h.*

*Dersê 'xemê: dersê derd û kûl.*

*Meh sebeq: ya kû çûyî, (ma sebeq).*

*Zert tibû: zerd dibû, zert debû.*

*Bav: geş, vekirî.*

*Bêgav: bêçare.*

*Te'zmîmî: (te'zmîm: gehandin) gehandina 'aşiqan.*

*Şêx Nûreddînê Birîfkanî şer'ha vê helbestê di navbera sal 1230-1238 h. di nav destxeteka xwe da bi zimanê 'erebî bi giştî kirîye. Ji bo parêstina wê şirovekirina ku Şêx Nûreddînî kirî û destkarî lê nehête kirin, me pêwîstî dît ku wê şer'hê wek orîjînalê em di vê dîwanê da çap bikin û deynîn ber çavê xwendevanên hêja. Ev şer'h di beşa 'erebî da ye.*

*'Herf el-Mîm (pîta "M")*

**Hicranê 'hebîbê**

Me'hbûbê, qede'h dîsa ji nû daye vi destim
Elmînnetû lîllah kû dîsan, waleh û mestim

Vemxwarî ji xumxaneyê 'işqê ezelî, mey
'Eql û dil û dîn cumle biçûn nû ve ji destim

Me'hbûbê, bi xwe şerbetê 'safî kû vi min da
Vemxwarî û ji kullî 'elayîq, bî perestim

Şehmarê 'xemê 'işqê dîsan, ser kû hilîna
Firyad û fî'xan kev dilê mecrû'hî, bigestim

Weh weh kû dilê sohtîyê bêçare ji dest çû
Ev dil ne tinê belkî bi cewher, çî kû hestim

Ez bê dil û hem miflis û dêwane, ti gerhêm (**1**)
Dil bûrda û gîyan sohtî û bêçareyê qestim

Bê 'sebrim û bê fehmim, bê sukne û aramim
Heta kû cemalê te bibînim, kedperestim

Ney mest û cinûn ez, ji 'xemê 'işq
Serxûşê meya 'heqbûm, hêj roja elestim

Xoş şevqetê î'hsanî kirim bû ew nî dûrî

Der'halî teda meqsed û her çî, kû ti xwastim

Ev xelwetî er nale b'kitin, lome mekin hûn
Rastî ku ji hicranê 'hebîbê, herî westim.

---

*Elmînnetû lîllah: minet ji Xwedêra.*
*Waleh: bê ageh û gêj û dîn.*
*Xûmxane: cihê kû rengê hirîyê çêdikin.*
*'Işqê ezelî: xûşewîstîya daîmî û hertim heyî û her wê hebe.*
*Kûllî 'elaîq: pêwendî dar, hemî tiştên jê 'hez dikim.*
*Şehmar: şahmar, marê mezin, ejdeha, 'hezya.*
*Firyad: hewar û gazî.*
*Fî'xan: giryan.*
*Mecrû'h: birîndar.*
*Bi gestim: bi min veda, pêweydam, pêvedam.*
*Çî kû hestim: her çî kû min hem, her çî kû hem.*
*Dêwane: dîn, şêt.*
*Bûrde: birîye, rifandûyetî, revandîye.*
*Mestim: serxweşim.*
*Bê sûkne: bê cih û mal.*
*Ked perestim: 'îbadeta canîya te dikim.*
*Cinûn: dîn, şêt.*
*Elestim: (elestû bîrebbîkûm) îşarete bû ayetekê di nav Quranê da.*
*Hicranê: fîraqê û dûrxistinê.*
*Westim: westîyayim, hîlakim, mandûm.*

*(1) Şêx Memdu'hê Birîfkanî di destxeta xwe da di vê rêza helbestê da ya ku jimara (1) û li cihê peyva (ti gerhê) danabû (tî gedhêm), lê li ser vê pêyvê nîşanek danîbû û li perawêza rûpelê nivêsîye (ti gerhêm) û li hember nivêsîye*

*(bedel), mena wê şûna wê digre.*

**Çelebî**

Car car ke tibit şeb şeb, hey hey çelebî qûm qûm
Xûş xûş tibim ez 'heb 'heb, hey hey çelebî qûm qûm

Sotim ji 'xemê mûmû, ta çendî biçim sû sû
Ey dostê were zû zû, hey hey çelebî qûm qûm

Me'hbûb ke vehat xeh xeh, te dilim kir hareh reh
Dîsan xweşim ez weh weh, hey hey çelebî qûm qûm

Hûn lêm negirin zewq zewq, yêkcarî bûyîm şeq şeq
'Heq maye tinê 'heq 'heq, hey hey çelebî qûm qûm

.........................xûş xûş, ta savebim ez geş geş
..........................weş weş, hey hey çelebî qûm qûm

............................................................ dem dem
Û dilim t'çinê 'xem 'xem, hey hey çelebî qûm qûm

............................dil dil, birêşte wekî bilbil
Bû.....................sil sil, hey hey çelebî qûm qûm

......................................, ta ez fexûrim her her

................................, hey hey çelebî qûm qûm

............................hey hey, saqî tû derîn mey mey
............................key key, hey hey çelebî qûm qûm

Saqî kû tibit ew ew, 'xem her tirijin dew dew
Nesîm vetidin hew hew, hey hey çelebî qûm qûm

Kûnde tibêjit qo qo, hûd hûd xu tibê po po
Ez her tibêjim ho ho, hey hey çelebî qûm qûm

Histir kû tiçin şet şet, sakin ne tibin qet qet
Seyran tikinê pet pet, hey hey çelebî qûm qûm

Derdim ji tebin tex tex, mûnşeqqe dilim rex rex
Dîdar me tivê ex ex, hey hey çelebî qûm qûm

Her geh ketibî car car, firyad tikim ez zar zar
Daim tibêjim yar yar, hey hey çelebî qûm qûm

Ey dostê bike lez lez, balim vebibez, bez bez
Sûhtim ji 'xemê ez ez, hey hey çelebî qûm qûm

Pisyar tikim ez rê rê, cada kû 'hebîb tê tê
Bîkan kû demek bê bê, hey hey çelebî qûm qûm

Ey xelwetî ta çend çend, qiflan li te kin bend bend
Bitgêrin li te gund gund, hey hey çelebî qûm qûm.

---

***Tibit:** dibit, ebêt, dibe (dîyare di serdema Şêx Şemseddînî da, ev peyv bi vî awayî dihate bikaranîn.*

*Şeb: şev.*
*Çelebî: 'alimekê ayînî yê mezin û şêxê terîqetê bûye, kurdê ji Kurdistana Bakûr e.*
*Qûm qûm: rabe rabe, heste heste, horêze.*
*'Heb 'heb: hêdî hêdî, wirde wirde, yeke yeke.*
*Ta savebim: ta sawabim, ta kûrpebim, ta savabim.*
*Birêşte: sûhtî, sûtaw, şewitî.*
*Nesîm vetidin: ba vedidin, sirwe heldeke, şine dekat.*
*Kûnde: teyreke bi navê kûnde, kûndebû, cû'xd, bayequş.*
*Pet pet: pol pol, kûm kûm, ref ref.*
*Mûnşeq: şeq şeq, hela hela.*
*Dîdar: dîtin, çawpêkewtin.*
*Hergeh: hercih.*
*Firyad: hewar û gazî.*
*Zar zar: nalîn û giryan, zarezar.*
*Bîkan: belkû, beşkû, belkî.*

*Ev rista ku Şêx Şemseddînê Exlatî gotî: (hey hey çelebî qûm qûm), 'arifekê din jî bi kar anîye, lê bi cûrekê din. Wî gotîye: (hey hey cebelî qûm qûm), îşarete bo kesekî ku li çiya maye û ne hatîye nav civata xelkî, vî 'arifî bi vê ristê ban wî şêxî dike.*

## Wey kû bibêm wey kû nebêm

Sohtime ez dîsa çikim, wey kû bibêm wey kû nebêm
Derdê 'xemê wê kîve bim, wey kû bibêm wey kû nebêm

Sohtî bisanê bilbilim, qu'tbê 'xema û te'hlim (**1**)
Her tixûda ez tikelim, wey kû bibêm wey kû nebêm

Derdê 'xemê dilest û bes, bak nedîrem ez ji kes
Kû hat'neme dîsa hewes, wey kû bibêm wey kû nebêm(**2**)

Dîsa sera ser ateşim, 'aşiqê rûyê dilkeşim
Mest û xerab û serxweşim, wey kû bibêm wey kû nebêm

Ev suxenê timin durrin, ez çi bikim kû nalkirin (**3**)
'Zahir û ba'tinim pirin, wey kû bibêm wey kû nebêm

Ev sûxenên bi qîmetê, bêgav tibêjim kilmetê
Mani'ê xelqê nekbetê, wey kû bibêm wey kû nebêm

Durguheran bûhayîn ev, cumle ji ber cemayîn ev
Li 'aşiqan 'sefayîn ev, wey kû bibêm wey kû nebêm.

---

***Bisan: wek, wekî.***
***Derdê 'xemê dilest û bes: derdî 'xemî dile û hîçî tir.***
***Bak: tirs.***
***Nedîrem: min tune, min nîne, nîme.***
***Hewes: (î'xrai), weswese.***
***Ateş: agir.***

*Dilkeş: (cezzab, mûlfet lîlen'zar), xwînşirîn, vekêş.*
*Xerab: 'hal xirab.*
*Sûxen: axiftin, peyivîn.*
*'Zahir: aşkira, aşkera.*
*Ba'tin: veşartî.*
*Bêgav: bêtirs, bêçare.*
*Nekbet: bêbext û bêşans.*
*Guheran: (guher: tiştên bi qîmet, giranbûha).*
*Bûhayîn: giranqîmet.*
*Cemayîn: cemabûyîn, civyan, kûbûnewe.*
*'Sefayîn: ('sefa: xûşî, kêyf, şadî, bezm), şadîn.*

(1) Şêx Memdu'hê Birîfkanî di destxeta xweda li jêr vê rêza helbestê ya ku jimara (1) me nîşan kirî, nivîsandibû "qu'tbê 'xema û te'hlim" û li jêra wê rêzê nivîsandibû "qet binema te'hlim" û li hember nivîsandibû "nûsxetûl a'slî" mena wê "qet binema te'hlim" di orîcînalê da ye û ya durist e.

(2) Şêx Memdu'hê Birîfkanî li hember vê rêza helbestê ya ku jimara (2) me nîşan kirî, li cihê peyva "kû hat'ne me" nivîsandibû "kirê hême" û li ser nîşanek danîbû û perawêza rûpelê nivîsandibû "kû hat'ne me" û li hember peyva "bedel" nivîsandibû, ku mena wê li cihê wê dibe.

(3) Şêx Memdu'hê Birîfkanî li cihê peyva "timin" nivîsandibû "dimin" û nîşanek danabû ser wê peyvê û li perawêza rûpelê gotîye "timin" û nivîsîye "bedel".

Herweha li cihê peyva "kû nalkirin" nivîsandibû "kû nakin" û nîşanek danabû ser û li jûra laperê nivêsîye "kû nal kirin" û li hember vê peyvê nivêsîye "S a'slî". Mebesta wî belkî di destxeta orîcînal da peyva "kû nal kirin" ya orîcînal e û ya duriste.

**’Xemê işqê**

Dîsan ji ’xemê ’işqê, ez bê ser û bê payem
Mecnûnim la ye’iqîlû, dêwane û sewdayem

’Işqê ku ’ulû kerde, ’aqil ji serim borde
Bê navim û bê dengim, bê ’arim û rûswayem.

---

***Bê ser û bê payem: bê hiş û bîrim, ser lê şêwawim.***
***Dêwane û sewdayem: Dîn û bêhişim, şêt sergerdan.***
***’Ulû kerde: xûya bûye, peyda bûye, serî he’ldawe, berz bûytewe.***
***Bûrde: birye, birdûyetî, birîye.***
***Rûswayem: ’heyam çûye, rûswa bûm, abrûm çûwe.***

*'Herf el-Nûn (pîta N)*

**Şemdîn**

Zehî durrê me'anî, zehî genc û zehî kan
Zehî lu'tfê îlahî, zehî şefqetê î'hsan

Zehî bade zehî cam, zehî şerbetê 'safî
Zehî xelwetê xalî, zehî saqîyê mestan

Ezim rindê xerabat, nizanim bi çi 'halim
Ne 'sofî û ne rindim, ne kufr û ne misilman

Ji weqtê kû tinûşim, meyê 'işqa celalî
Ne leyl û ne nehar bûn, ne ev gûnbedê gerdan

Ji hingê nûrê mestim, tidest camê elestim
Li bo vê ez cinûnim, bûyîm waleh û 'heyran (**1**)

Ji 'işqê kû ticûşim, mûlazîm bixurûşim
Ezim be'hrê mu'hî'tê, ezim qurzem û 'umman

Zehî 'eynî 'ecaîb, kezim keştîyê derya (**2**)
Timind hemwar me'hwin, ezim nacî û 'tofan (**3**)

Ji camê meyê 'işqê, xumarim hem yê mestim
Ezim qatilê nevsê, ezim dijminê şeytan

Timeyxaneyê 'işqê, serê xû neke ronî

Vexû badeyê 'safî, were 'helqeyê rindan

Yêkser cihan di destim, li balim biflûsek (4)
Hemû mûlkêt dinê û, hemî 'hukmê Suleyman

Xumarim ji şerabê, werîne nûql û kebab
Dîsan zewq û 'sefaye, bibîn bezmê 'herîfan

Zehî na'tiqê no'tqim, kû evser te'ecûbîn (5)
Zehî sirrê nihanî, zehî defterê e'iyan

Ji derdê 'xema 'işqê dîsan sotîye Şemdîn (6)
Ezim 'samitê teslîm, ezim bendeyê ferman (7).

---

*Zehî: carna, hinde ca, hindê car, hinek cara.*
*Kan: me'iden (kanê zêr, kanê asin).*
*Bade: mey.*
*Cam: şîşe, perda'x, gilas, şûşe.*
*Xelwetê xalî: bi tinê û gûşegîr, bêdeng li fikra Xwedêyê mezin.*
*Saqîyê mestan: meygêr, ewê meyê dide kesên veduxun.*
*Rindê xerabat: serxûşî meyxanenişîn.*
*'Işqa celalî: evînîya xwedayî.*
*Gunbedê gerdan: felek, gerdûn.*
*Camê elestim: 'işqî ezelî û xudayî, (elestû bîrebbîkûm) îşarete bû ayeteka Quranê, perwerdigar, teslîmê destê Xwedê me.*
*Waleh: bê ageh û dîn.*
*Ticûşim: dikelim, ekûlêm, dekûlêm.*
*Mûlazîm: gereke, pêwîste.*

*Bixirûşim: rabime ser pê û hawar bikim, bibizavim.*
*Keştî: belem, gemî.*
*Derya: be'hir.*
*Hemwar: lebar, mûsa'id, şîyav, layîq.*
*Me'hwin: fewtaw, nemayî, le nawçûyî, li nav çûyî.*
*Nacî: yarmetîder, kesê kû di tengavîyê da alîkarîyê dike.*
*'Tofan: ziryan, bayê tund, bayê bi qiwet, bahûz.*
*Xumar: gêj, gêj û wirî dûwey serxûşî.*
*Serê xû neke rûnî: neçe hûndir, meçû jûrê.*
*Badeyê 'safî: şeraba xweş.*
*'Helqeyê rindan: xelkên bê xem û xîyal, tê me'na "were nav kûma mêran".*
*Werîne: bîne, tu bîne, bêne.*
*Nuqûl: meze, mize.*
*'Sefaye: xûşîye, şadîye.*
*Bibîn: bibîne.*
*Bezmê 'herîfan: kesên kû ji me hez nakin.*
*Natiqê nûtqim: kesê kû baş diaxife, xeber didim, qise dikim, qise dekem.*
*Evser te'ecûbîn: her kesekî pê 'ecêbe, ke hemû kes pê seyre.*
*Sirrê nihanî: tiştên veşartî.*
*Defterê e'iyan: deftera xuya û aşkira.*
*Bendeyê ferman: li benda fermana Xwedê.*
*Samitê teslîm: bêdengê teslîmbûyî.*

(1) Şêx Memdu'hê Birîfkanî di destxeta xweda li cihê peyva (cinûnim) nivîsandibû (cend nim) û li ser nîşanek danabû û perawêza vê rûpelê li jêr eynî nîşanê nivîsandibû (cinûnim) û li hember nivîsandibû (bedel).

(2) Şêx Memdu'hê Birîfkanî di destxeta xweda li cihê peyva (keştî) nivîsandibû (kîşwer) û li ser nîşanek danabû û

perawêza vê rûpelê li jêr eynî nîşanê nivîsandibû (keştî) û li hember nivîsandibû (s).

(3) Şêx Memdu'hê Birîfkanî di destxeta xweda li cihê peyva (timinda hemwaz) nivîsandibû (timind hemwar) û li ser nîşanek danabû û perawêza vê rûpelê li jêr eynî nîşanê nivîsandibû (timinda hemwaz), lê em ne bawer bûyîn ku ev peyv (hemwaz) e, ji ber ku nîvê peyvê hubrê wê jê çûye. Lewra me dana (timind hemwar).

Herwisa di 'eynî rêzê da li cihê peyva ('tûfan) nivîsandibû ('zîfan) û li hember peyva (tûfan) nivîsandibû (s).

(4) Şêx Memdu'hê Birîfkanî li jûr peyva (yêkser) nîşanek danîbû û li perawêza rûpelê da li jêr 'eynî nîşanê du peyv nivîsandine, ku nayêne xwendin, wek mîna (kez'xem). Û li berîya wê nivêsîye (tû'ze'i), ku dewsa peyva (yêkser) digre. Li gûr guhartina Şêx Memdu'h Birîfkanî ev rêz wê bi vî awayî bit: (*Kez'xemê cihan destim li balim bi filûsek*).

(5) Şêx Memdu'hê Birîfkanî li ser peyva (zehî) ya yekê ku di vê rêza (5) nîşanek danîbû û li perawêza rûpelê li jêr eynî nîşanê peyva (pevê) yan (pivî)nivêsîye û li hember vê peyvê nivêsîye (s). Li gor vê guhartina Şêx Memdu'hê Birîfkanî ev rêz wê bi vî awayî bibe: *(Pevê na'tiqê no'tqim ku evser te'ecûbîm)* yan jî *(Pivî na'tiqê no'tqim ku evser te'ecûbîm).*

(6) Şemdîn: naznavê Şêx Şemseddînê Exlatîyê Birîfkanî ye.

(7) Li hember peyva (teslîm) Şêx Memdu'hî xetek birîye bû peyvekê, ku ew jî (teslûm) û li hember nivêsîye jimara 3. Li gor vê guhartinê ev rêz dibe (*Ezim 'sami'tê teslûm ezim bendeyê ferman*).

**Fîraq**

Evrû weyim ez jêkve nenasim, ker û baran
Ferqê nakirim ez nûnkê jêkve, gul û xaran

Ey dostê dilê sohtî, ne car carî di şertên
Wi'llah ke dilê sohtî kebabest, hemû caran

Zerkê kû bûyîn dîn û ji dînê te û me'hcûb
Şev ro tigirîn em ji fîraqê, wekû baran

Satê ke dikim nû'he û zarî ji 'xemê te
Bêgav tixrûş tînim û girye, ber û daran

Yêk le'h'ze û sa'et me nema sakin û 'sebrim
Madam ezim wê ketî zarê, ef'a û maran

Geh geh wekû dêwane ti girîm, li kuwîvan
Geh bê ser û saman ti çime, qerye û şaran

Geh êrve û wêrve di kirim 'su'hbetê xelqê
Geh geh wekû kûngir ti çime, suqbe û 'xaran

'Işqê te 'hebîb ev hemû înane bi ser min

Lewra ti hemû memleketan, keftime zaran

Ez keftime deryayê 'xemê te wekû keştî
Heyhat ke biçî 'xerqetê be'hrê, ve kinaran (**1**)

Ez nû, ne 'ecîbim ke ewan 'aşiqê çûyî
E'hwalê dilê sohtîyê wan, takû bijaran

Ev xelwetî bêgav ti kete nale û firyad
Me'izûr bi kirin hûn bi kerem jê, gelî yaran

Der 'işqê meqamat û kemalê, kû meşîbû
Şeb ta se'herê sakinê her kûh û qefaran.

---

***Nûnkê: nînûkekê, nûnîkekê, nînûkêk, neynûkek.***
***Xaran: stirî, dirik.***
***Zerkê: katêk, demêk, gava.***
***Me'hcûb: pişt perde, nedîtî, nebînraw.***
***Satê: wextê, katêk.***
***Nû'he û zarî: girî, giryan û şîwen.***
***Bêgav: lepir, lenakaw, ji nişkêve, bêçare.***
***Tixirûştînim: tê wê me'ina (ber û daran dênme cûş û girîn(.***
***Zarê ef'a û maran: demî mar û ejdeha, devê mara.***
***Kûîvan: çiya, şax, kêw.***
***Qerye: gund, dê.***
***Êrve û wêrve: hêrve û wêrve, lêre û lewê, vira û wira.***
***Kûngir: 'heftyar, kemtîyar.***
***Suqbe: kun û şkeft, eşkewt.***
***'Xaran: ('xar: şkeft).***
***Zaran: zimanan.***

*Derya: be'hr.*
*Keştî: belem, gemî.*
*'Xerqetê: ketina binê avê, kewtine jêraw, niqûnbûn, niqûmbûn.*
*Kinaran: (kinar: qera'x, rexê avê, sa'hil).*
*Bijaran: bijan û jar, bi êş û kul.*
*Nale: nal nal.*
*Firyad: hawar û gazî.*
*Me'izûr: 'efû, berdan, lênegirtin (bibûre lê megrin).*
*Meqamat û kemalê: mertebên hêja û bi lîmet û qîmet, pilewpaye.*
*Kûh: çiya.*
*Qefar: şikeft.*

(1). Şêx Memdu'hê Birîfkanî ev rêza helbestê bi awayekê din jî nivêsîye:
(Heyhat ke biçî 'xerqenê be'hrê ve kinaran).
Lê di pêncmalkîya Şêx Nûreddînê Birîfkanî da li ser vê helbestê, Şêx Memdû'hî weha nivêsîye:
(Heyhat ke biçî 'xerqeyê be'hrê, ve kinaran).

*'Herf el-Waû (pîta (O)*

**Tenenaha yaho**

Ez kû mestê meyê 'işqim, tenenaha yaho (1)
Mi'sir û Be'xdad û Dîmeşqim, tenenaha yaho

Têşneyê avê wî'salim, ji 'xemê 'işqê tinalim (2)
'Aşiqê 'heyê celalim, tenenaha yaho

Kelekê, cerge kebabim, bêxew û mest û xerabim (3)
Saqî û xemr û şerabim, tenenaha yaho

'Aşiq û bengim û kasim, melek û cinnim û nasim (4)
'Xeyrî wî kes dî nenasim, tenenaha yaho

Waleh û kasim û bengim, mestim û şoxim û şengim (5)
Ser bi ser pêt û perengim, tenenaha yaho (6)

Ezê bêcah û meqamim, xadim û şah û 'xulamim (7)
Meşrûq û nûr û 'zelamim, tenenaha yaho (8)

Ma'zherê zat û 'sîfatim, me'idenê 'eynî 'heyatim
Keştî û Nu'h û necatim, tenenaha yaho (9)

Hadîyê di rê û delîlim, nemek û xwan û xelîlim (10)
Benîyê xa's û celîlim, tenenaha yaho (11)

'Sa'hibê qelbê selîmim, dijminê dêwê recîmim (12)
Cebelê 'tor û kelîmim, tenenaha yaho (13)

Mûşkil û 'hellê beyanim, xefî û sirrê nihanim (**14**)
Nadirê ehlê zemanim, tenenaha yaho

Waleh û mestim û faşim, ser û rîşan di tiraşim
Geh evist mal û qumaşim, tenenaha yaho

'Enber û misk û bixorim, 'sû'huf û lew'h û zebûrim
Agir û avim û nûrim, tenenaha yaho

Ji meyê 'işqê xumarim, me nema 'sebir û qerarim (**15**)
'Aşiqê we'sletê yarim, tenenaha yaho

Waleh û mest û cinûnim, ji 'xemê 'işqê zebûnim
'Aşiqê 'heyê bêçûnim, tenenaha yaho

Bilbilê 'aşiqê werdim, kelekê bîxwab û xurdim
Ji 'xemê dostê bi derdim, tenenaha yaho

'Samit û lal û xemûşim, sirrê yarê xwe dipûşim (**16**)
Ger çi ez badefirûşim, tenenaha yaho (*1)

Xelwetî 'aşiqê meste, qede'hê bade bi deste (**17**)
Ji dinê, ew bi pereste, tenenaha yaho (**18**).

---

***Kelekê: ('sa'hib el qer'he), ewê kû nexûşî û janên me'idê hey.***
***Têşne: tênî, tînû, têhnî.***
***Wî'sal: pêk gihandin, be yêk geyîştin.***
***'Heyyê Celal: Xwedêyê mezin (Celle Celalehû).***
***Bengim: gêjim, gêcim, (beng: benc, muxeddir).***

*Xerab: bê 'hal û xirab.*
*Kasim: gêjim, gêcim.*
*Waleh: bê ageh û dîn.*
*Pêt û pereng: pêt û pelên agirî.*
*Cah û meqam: mertebeka bilind, mertebeyekî payeberz, pilewpaye.*
*'Zelam: tarî û taristan, tarîk.*
*Zat: zatê xwe, nefsa xwe, xûdî xûm.*
*'Eynî 'heyatim: kanîya jîyanim, serçawey jîyanim.*
*Keştî: belem, gemî.*
*Necat: rizgar, qûtar.*
*Hadîyê di rê: rê şander, şarezay rê, rêzan.*
*Nemek: xû, xûyî, xûwê.*
*Xiwan: sifre.*
*Xelîlim: dûst, hawdem.*
*Dêwê recîm: şeytanê dêw.*
*Cebelê 'Tor: çiyayê torê Sîna.*
*Kelîmim: bi axiftinim, qisezanim (îşarete bû pê'xember Mûsa dema bi Xwedê ra axift).*
*Sirrê nihan: sirrê veşartî, nihênî şarawe.*
*Faşim: aşkirame, aşkiram.*
*Evist: bê (bê mal û qumaşim), ebest.*
*Misk: bêhneka xweşe ji navka 'xezalan der tînin û dermane jî.*
*Xumar: nexweş û bê'hal.*
*Zebûn: bêdesthelat, bêdeselat.*
*Bêçûn: bê nimûne (ewey ke nimûney wekû xûy nîye, kes wek wî tune, bê hawta, (bîla ne'zîr).*
*Werdim: gûlim.*
*Bîxwab û xûrdim: bêxew xwerdin û xûrakim.*
*Xemûşim: bê dengim.*
*Dipûşim: eyşarmewe, diveşêrim, vedişêrim.*
*Bi pereste: 'Îbadet dike.*

Ev rêzên helbestê di destxeta Şêx Mehemmed ’Tahirê Birîfkî da bi vî awayî bûn:

(1) **Ez geh mestê meyê ’işqim, tenenaha yaho**
(2) **Têşneyê abê wî’salim, zi ’xemê ’işqê tinalim**
(3) **Kelekê cerg kebabim, bîxûd û mest û xerabim**
(4) **’Aşiq û dengim û kasim, melek û cinnim û nasim**
(5) **Walleh û kasim û dengim, mestim û şoxim û şengim**
(6) **Ber serê pest û perengim, tenenaha yaho**
(7) **Ez meyî caw û meqamim, xadim û şah û ’xulamim**
(8) **Meşriqê nûr û ’zelamim, tenenaha yaho**
(9) **Keştîyê Nû’h û necatim, tenenaha yaho**
(10) **Hadîyê rahê delîlim, nemekê xwanê xelîlim**
(11) **Nebîyê xa’sê celîlim, tenenaha yaho**
(12) **’Sa’hibê qelbê selîmim, dişminê dêwê recîmim**
(13) **Cebel û ’Tor û kelîmim, tenenaha yaho**
(14) **Mûşkilê ’hellû beyanim, xefîyê sirrû ’eyanim**
(15) **Ji ’xemê ’işqê xûmarim, min nema ’sebir û qerarim**
(16) **’Samit û lal û xemûşim, sirrîya xû zû dipûşim**
(17) **Xelwet û ’aşiqê mestim, qede’h û bade di destim**
(18) **Ji dinê da ew peristim, tenenaha yaho**

(*1) Ev rêza helbestê di destxetek din da bi vî awayî bû:
(**Ger çi ez bade tinûşim, tenenaha yaho**).

*Şêx Nûreddînê Birîfkanî şer’ha vê helbestê di navbera sal 1230-1238 h. di nav destxeteka xwe da bi zimanê ’erebî bi giştî kirîye. Ji bo parêstina wê şirovekirina ku Şêx Nûreddînî kirî û destkarî lê nehête kirin, me pêwîstî dît ku wê şer’hê wek orîjînalê em di vê dîwanê da çap bikin û*

*deynîn ber çavê xwendevanên hêja. Ev şer'h di beşa 'erebî da ye.*

**Kûngir**

'Uzlet ti kirim daim dîsan, wekû kûngir
Her wê ki hebit kavilek, ez lê ti xûnim qo qo

Geh geh wekû hûdhûd ez men'zûrê Suleymanim
Geh geh li rûyê 'se'hra, bi fî'xan dibêjim po po

Dîtim ke li ser darê ba zebanê fe'sî'h kapil
Tigirî ke tibin 'xafil, ev xelq hemû ko ko.

---

*'Uzlet: gûşenişîn, xûveşartin, xûşardnewe, li vir "terkî dûnya kirdin".*

*Kûngir: 'heftyar, kemtîyar.*

*Kavilek: malek, xanîyek, malekî biçûkî be qûr dirûst kiraw, kawlan, kawlekan, xanûy kawil, kavil.*

*Hûd hûd: teyrê Hûd hûd.*

*Menzûrê Sûleymanim: çavê min li Sûleyman pê'xembere, çawim li Sûleymanî pê'xembere.*

*Fî'xan: giryan û hawar.*

*Kapil: teyrê kapil.*

*Ko ko: xwendina teyrê "kapil e" dema dixwîne tê me'ina (çima çima, bû bû, ji bû çi ji bû çi).*

*Şêx Nûreddînê Birîfkanî şer'ha vê helbestê di navbera sal 1230-1238 h. di nav destxeteka xwe da bi zimanê 'erebî bi giştî kirîye. Ji bo parêstina wê şirovekirina ku Şêx Nûreddînî kirî û destkarî lê nehête kirin, me pêwîstî dît ku wê şer'hê wek orîjînalê em di vê dîwanê da çap bikin û*

***deynîn ber çavê xwendevanên hêja. Ev şer'h di beşa 'erebî da ye.***

*'Herf el-Yai (pîta Î)*

**Bûl bilî**

Tûrk û zengim şûx û şengim, bûl bilî
Ez ji 'işqê mest û dengim, bûl bilî (**1**)

Ez xumarim baqerarim rûzû şev
Dûr jîyarim lew tizarim, bûl bilî

Serc û fendim, mest û rendim daîmen
Derdmendim, dil tibendim, bûl bilî

Dil 'xerîbest 'endelîbest dostê gûl
Yar 'hebîbest ew 'tebîbest, bûl bilî (**2**)

Ez cinûnem, 'xerqê xûnem, malxirab
Zerd gûnem lew zebûnem, bûl bilî (**3**)

Ez helakem derdnakem, xestedil
Nezcê xakem rû'h pakem, bûl bilî

Ev ne dûrest xûş bixorest, bûyê yar
Cumle nûrest xûş 'hi'zûrest, bûl bilî

Ev ne lafest, şehdê safest, bî de'xel
Xemir, 'eyn û şîn û qafest, bûl bilî (**4**)

Ev çi qalest, ev çi 'halest, pêş dipir
Wecdê şewqest 'hal û zewqest, bûl bilî

Ba niqabest, afitabest ’husnê dost
Dil xerabest cerg kebabest, bûl bilî
Me dil da dest, mûsteza dest fe’zlê yar
Her zîyadest xûş mûradest, bûl bilî

’Îz û nazest cumle razest, ser bi ser
Hem nîyazest zewq û sazest, bûl bilî

Xelwetîmû ’sub’hetîmû dostdar
Şerbetîmû ’iîşretîmû, bûl bilî.

---

***Tûrk: sipî û pakijî, paqijî.***
***Zeng: zelal, tîşkî mang û hetaw.***
***Xûmarim bê qerarim: (’zecer), qeleqim, bê’hal û nexûş.***
***Sercûfend: şîyar û bi agah.***
***Daîmen: herdem, hertim.***
***Derdmend: bi êş û azar.***
***Diltibend: dilê min keftîye dav û qeyda, dilim kewtûwete daw.***
***Dil’xerîbest: dil ’xerîb, dilim bê kese.***
***’Endelîbest: (’Endelîb: bûlbûl, bûlbûle).***
***Zerd gûnem: Zerd wênem, reng zerdim, kûlûm zerd.***
***Zebûnem: bêçare, bêdesthilat, bêdeselat.***
***Nezcê xakem: ’xerqî xak bûm, keftime bin axê.***
***Nedûrest: ne dûre, dûr nîne.***
***Bûyê yar: bêhna yar, bûnî yar.***
***Cûmle nûrest: qisexûş, sû’hbetxûş.***
***Hizûrest: xûşrû, kesê kû ’hez ji têkelîya wî dikey.***
***Lafest: (laf: direw, dirû û delese).***
***Bî de’xel: bê firûfêl, bê xewş.***
***Xemir, ’eyn û şîn û qafest: şerabî ’işqe.***
***Wecdê şewqest ’hal û zewqest: ’haletê xûşîyê.***

*Ba niqabest: pêça ser û çavan, ya kû jin bi kar tînin, rûbend, perde.*

*Afitabest: (afitab: tav, hetav, hetaw).*

*Mûsteza dest fazlê yar: qedirê yarê ji hemî tiştî zêdetire.*

*'Îz û nazest: qedir û qîmet û nazdarî.*

*Razest: nihênî, veşartî, şarawe, nadîyar.*

*Nîyazest: (nîyaz: pêwîstî).*

*Sazest: saz û awaz.*

*Dostdar: pir le xûşewîstî.*

*Şarbetîm û 'îşretîm: 'hezim le xwardinewew û meclisî zewq û şadîye.*

(1) Şêx Memdu'hê Birîfkanî di destxeta xweda li cihê peyva (Ez ji 'işqê) nivîsandibû (Pir bi rengim) û nîşanek li ser danîbû û di perawêza rûpelê da li jêr 'eynî nîşanê nivêsîye (**Ez ji 'işqê mest û dengim**) û li hember nivêsîbû (bedel), ku tê mena ev cihê (**Pir bi rengim**) digre û dibe (**Pir bi rengim, mest û dengim, bûl bûlî**).

(2) Şêx Memdu'hê Birîfkanî di destxeta xweda li cihê peyva (Ew 'hebîbest) nivîsandibû (Yar 'hebîbest) û nîşanek li ser danîbû û di perawêza rûpelê da li jêr 'eynî nîşanê nivêsîbû (Ew 'hebîbest) û li hember nivêsîbû (nûsxe), ku tê mena ev dê destxetek din da bi vî awayî ye (**Ew 'hebîbest ew 'tebîbest, bûl bûlî**).

(3) Şêx Memdu'hê Birîfkanî di destxeta xweda li cihêpeyva (merd) nivêsîye (zerd) û nîşanek li ser danîbû û di perawêza rûpelê da li jêr 'eynî nîşanê nivêsîye (zerd) û li hember nivêsîye (s) ku dibe (**Merd gûnem, lewze bûnem, bûl bûlî**).

(4) Şêx Memdu'hê Birîfkanî di destxeta xweda li cihê peyva (xemir 'eyn) nivêsîye (semir 'eyn) û nîşanek li ser danîbû û di perawêza rûpelê da li jêr 'eynî nîşanê nivêsîye (xemir 'eyn) û li hember nivêsîye (3) ku dibe (**Semir, 'eyn û**

**şîn û qafest, bûl bûlî**).

**Mişk**

Dîsan ti 'xeman mayim, evrû pijmir xwînê
Kev mişk hate 'inbarê, ew 'tolê ti kadînê

Kul dipême ev mişk e, ê birsîye lêv hişke
Vêm rabûye hevpişke, zistanê û havînê

Pêm bestine cot bille, 'ha'sil ti kirim 'xulle
Kû mişk tikite zille, paqiş dike çoxînê

Kadîn heke pir kaye, ew 'tolê li ser raye
Her munte'zirim maye, ta lêm b'kitin birînê

Mişkê kû bûye dijmin, hinban kirîye kûn kûn
Nehişt genim û erzin, rêj birîye poxînê

'Terkê min herî cayî, mişkê kû ji min zayî
Dîrnabite vî mayî, lewra tikirin şînê

Ev xelwetî aza bû, dîsan ji 'xeman rabû
Şûkrane kû dil şabû, ez bereket yasînê

---

*Ti 'xeman: di 'xeman, dîyar e di serdema Şêx Şemseddînê Exlatî da ev peyv bi vî awayî dihate bikaranîn.*

*Pijmir: derd û kûl, çirmisî, jakaw, sîs.*

*'Inbar: cihê tişt hilgirtinê.*

*Ti kadînê: di kadînê.*

*Kadîn: cihê ka, kadên, cihê ka hilgirtinê.*

*Hevpişk: hevdûst, şirîk.*

*Bestine: girêdayîne.*

*Cot bille: dupa, dupel, dupê.*

*Tikirim: dikirim.*

*'Xulle: danewêle, genim û cew, dan.*

*Tikite: dikite.*

*Zille: çavzille, çawî kewte zilezil.*

*Çoxîn: xerman, şara, bêder, bênder.*

*Hinban: gînî û telîs, gînîk, çewal.*

*Rêj birîye poxînê: tê me'ina (be pûxînekeş fêrbûwe), rêka pûxînê jî pê hesîyaye.*

*Poxîn: bermayê arê mûxilkirî, ew beşe zebrey le ard demênêtewe diway li êlekdan.*

*'Terk: şivkê darê, şiv.*

*Zayî: bûyî, hatî.*

*Bereket Yasînê: bereketa sûreta Yasînê di Qurana pîrûzdaye.*

**Tenim tinê weten tenê**

Ti bêjim ez ji qal û 'hal, tenim tinê weten tenê
Er çi ti kin xwînim 'helal, tenim tinê weten tenê.

---

***Tibêjim: dibêjim, elêm.***
***Tikin: dikin, eken.***
***Dîyar e di serdema Şêx Şemseddînê Exlatî da ev herdu peyve bi vî awayî dihatine bikaranîn.***

**Di nav destxeta Şêx Mehemmed 'Tahirê Birîfkî da, ev herdu rêzên helbestê di nav helbesta ku bi navê (Mest û xerabim) li dawîya wê rêz kiribûn, lê di destxeta Şêx Memdû'hî da bi serê xwe bûn, herwiha di destnivîsas Şêx Nûreddînê Birîfkanî da, ku helbestên Şêx Şemseddînê Exlatî şer'h kirîn, dîsan ev herdu rêzên helbestê bi serê xwe bûn, loma jî me bi serê xwe danîn.**

***Şêx Nûreddînê Birîfkanî şer'ha vê helbestê di navbera sal 1230-1238 h. di nav destxeteka xwe da bi zimanê 'erebî bi giştî kirîye. Ji bo parêstina wê şirovekirina ku Şêx Nûreddînî kirî û destkarî lê nehête kirin, me pêwîstî dît ku wê şer'hê wek orîjînalê em di vê dîwanê da çap bikin û deynîn ber çavê xwendevanên hêja. Ev şer'h di beşa 'erebî da ye.***

# Pêncmalkîyên Şêx Nûreddînê Birîfkanî

**(1)**
**Pêncmalkîya Şêx Nûreddînê Birîfkanî li ser helbesta bapîrê xwe yê çarê Şêx Şemseddînê (El-Qu'tb el-Xelawatî) yê Exlatî yê Birîfkanî**

**Li ser helbesta bi navê (Dîdarê yar)**

Dernexistîne te bazûyê sîmîn li me mişt
Di qîdemda ji di qewsên te li dil da me gehişt
Ciger û sîne 'eceb, semtine tîr û rim û xişt
Derdê 'işqê weh li min, rojî ezel kir ser nivişt
Her ji hingê dilê kul bûye, çu biryanê birişt

Bese qismet ji dinê, kakûlê reştûzê 'semed
Gul û nesrînê zûcacî, qede'h û camê cemed
Me kû nûşî ji meyê we'hdedê e'llah û e'hed
Ev dilê kul soz û derdî ji te besin ta ebed
Nemitvê 'hûr û qi'sûr û cumle lezzatê behişt

Qet 'eceb nîne ji min 'zahir bibin pir mu'icîzat
Qu'tbê 'ialem bîn û dil deryayê 'iîrfan der sûbat
Sirr elem neşre'h ji bû qelbê meyê 'xemgînî hat
Hûn mebên kev derde evrû, raste dilmê kul xelat

Evhe mîras hate bal'min qern be qern û pişt be pişt

Dilberim ev cerge têkda bûye biryan û kebab
Em kirîn meytê li ser textî, ne guftar û cewab
Mî'hneta 'işqate cana dil kire be'hrê 'ebab
Derd û 'işq herdu cemabûn hatne ser dilmê xerab
Lew perrat ev dil ke hingaft hem bi şîr û hem bi xişt

Der 'telebkarî te ser sewda û dil haim bikim
Xidmetek bê 'xiş li bû me'hbûbê her qaim tikim
Roj û şev çeşmê me xew nayê û xew 'saim tikim
'Talibê dîdarê yarim cûstû cû daim tikim
Ger xerabatest û mescid wer çi ke'hbest û kenîşt

Min ji meq'sûda tinê her dil miradek jê dixwest
Pir 'zeîf bû min ji cûstû cû dilber, can û post
Şukur lîllahî 'xemê te'hl, min ji ber rabûn çost
Her ji hingê wer kû bûyîm, aşnayê derdê dost
Terkîyan xûm kirdî her kez, lê nevêtim mal û çişt

Dîsa ava bû li min ev malê gûristanê dil
Hicrê dîdarî ruhabû mahê tabistanê dil
Cur'eyek badî vexwarim pê vejî mestanê dil
Leşkerê 'işqê 'elem îna ve şehristanê dil
'Xaret kir ehlê şehir çendkêk dibûn hûr û dirişt

E'hsene'llah çû jivê meydanê dil cewra reqîb
Qismetek bê'hed giha min we'slê dîdarê 'tebîb
Geh ji we'slê, geh ji hicrê xûş mirad bû xûş ne'sîb
Çindikê ez b'girîm j'soz û derdê hicranê 'hebîb



Gundê Birifka, piştî ku hatiye xirab kirin di 1962-yê da.



Tekiye û mezarê şex Nuredînê Birfkanî, li gundê Birîfka.
Ev wêne di 26-ê kunûna Paşiyê 1962-yê da hatiye girtin.



Tekiye û mizgefta gundê Birîfka, piştî ku hatiye xirab kirin di 1962-yê da. Li 1997 bi şêwekê nûjen hatiye avakirin.



Gundê Birîfka li roja duşembyê di 26-ê adara 1962-yê da, dema gund hatiye çol kirin, ev wêne hatiye girtin.



Gorê şex Nuredîne Birîfkanî yê piroz dinav tekiya gundê Birîfka da, heta roja îro ji her çar kinarêt Kurdistanê xelk diçin seredana wir.

Şecereya taifeya Zeynulabidînê Şex Şemseddînê Qutbê Exla'tî yê Birîfkanî, bapîrê binemala şêxên Birîfkanê yê ko di dema xwe da hakim bû. Di navbera (1035-1119h) jiyay e..



Gundê Birifka, piştî ku hatiye xirab kirin di 1962-yê da.



Tekiye û mezarê şex Nuredînê Birfkanî, li gundê Birîfka.
Ev wêne di 26-ê kunûna Paşiyê 1962-yê da hatiye girtin.



Tekiye û mizgefta gundê Birîfka, piştî ku hatiye xirab kirin di 1962-yê da. Li 1997 bi şêwekê nûjen hatiye avakirin.



Gundê Birîfka li roja duşembyê di 26-ê adara 1962-yê da, dema gund hatiye çol kirin, ev wêne hatiye girtin.



Gorê şex Nuredîne Birîfkanî yê piroz dinav tekiya gundê Birîfka da, heta roja îro ji her çar kinarêt Kurdistanê xelk diçin seredana wir.

Şecereya binamal şêxên Birîfka, ya ko Şêx Memdû'hê Birîfkanî bi xwe di sala 1970-ê da amade kirî.

Şecereya taifeya Zeynulabidînê Şex Şemseddînê Qutbê Exla'tî yê Birîfkanî, bapîrê binemala şêxên Birîfkanê yê ko di dema xwe da hakim bû. Di navbera (1035-1119h) jiyay e..